# BasNûçe

HERDEM RASTÎ




Rojname ya heftane ya nûçeyî - 2.5 TL

Hejmar: 108 27 Hazîran - 3 Tîrmeh 2016 basnuce.com


Govara Parzemîn

**Em li dû zanistiyê ne**



R16

# Bang heye, yekîtî tune ye!



Di dirêjahiya dîrokê de, meseleya yekîtiyê, her dem di rojeva siyaseta kurd de cîh girtiye û kar li ser wê hatiye kirin, lêbelê heta niha tu encam nehatine bidestxistin. Piştî şer û pevçûnên li Bakur, mesele ya yekîtiyê dîsa ket rojeva partî û aliyên siyasî yên dervayê xeta PKK/ HDP'ê.

Ligel aliyên îslamî, 4 partiyên rêbaza PDK'ê didomînin, xeta PSK/HAK-PAR, herwiha PAK û gelek rêxistinên çepgir, li ser vê meseleyê nîqaşên entelektûelî birêve dibin. Herî dawî biryara yekîtiyê ya hin kadroyên PDKT û KADEP'ê û banga PAK'ê ya 'yekgirtina di bin banekî de' careke din di rojevê de cih girtin.

R02-3

## Menbîc ket, Bab li rêye!

R06-7

## Pevçûnan barkirin çûn çiya!

R10

## Komele û PDKİ hevpeymanî lidarxistin

R11

Zazakî

## Roşan Lezgînî na rey bi tirkî nuşto

R14



**Arif Qurbanî:**

## Barzanî dikare qeyranê çareser bike

"Rêkeftinên di navbera partiyan de têkçûne. Parlemento ne aktîv e. Keşe û arîşe kurtir û aloztir dibin."

R08-9

**Mesûd Barzanî:**

## Bo rapirsiyê amede bin

Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî da zanîn ku dema wê yekê hatiye ku rapirsî bê rojevê û bang li aliyên siyasî kir ku ji bo referandûmê amadekariyan bikin. Barzanî di peyama xwe de ji aliyên siyasî jî xwest ku dev ji milmilaneyên navxweyî berdin û ji bo referandûmê li hev kom bibin.



R05



# Lêgerîna siyaseta kurd ya yekgirtinê

**Yeter Polat -M. Emin Kan**
**Dilan Almaz**
**Ahmet Özyeter - Eren Dinç**

Di dirêjahiya dîrokê de, meseleya yekîtiyê, her dem di rojeva siyaseta kurd de cîh girtiye û kar li ser wê hatiye kirin, lêbelê heta niha tu encam nehatine bidestxistin. Piştî şer û pevçûnên li Bakur, mesele ya yekîtiyê dîsa ket rojeva partî û aliyên siyasî yên dervayê xeta PKK/ HDP'ê. Pevçûnên dawî yên bûn sedema karesatên mezin, bû sedema lêgerîna yekîtiyê jî di navbera aliyên siyasî yên li derveyî siyaseta navendî disekinin.

Rêxistin û partiyên ku di nava gel de terefgîrê wan tunene, bi giştî weke hizbên qadroyî ne, li kuçeyan çalakiyan pêk naynin, herwiha proseya birêxistinbûnba xwe bi dawî nekerine, di warê bernameyan de dişibin hevdû rexneyan li PKK/HDP'ê dikin û banga yekîtiyê dikin. Ligel rexneyan, pêşniyazên wan ê di bernameyên xwe de bi cihkirine jî gelekî balê dişîbin hevdû, bes heta niha di warê alterfnatîfbûnê de pêş de neçûne.

Ev partî û rêxistin li hêrêmên ku pevçûn lê hebûn dûr sekinin û ew şerê xendekan bi tûndî rexnekiribûn. Ligel wê yekê ne karîbûn li ne hember kiryarên dewletê û ne jî li hember çalakiyên PKK'ê helweseteke xurt nîşan bide û weke aliyê seyem derkeve pêş. Ev alî heta niha nikarîbû rêgiriyê di ber van şer û pevçûnên ku weke "Şerê PKK û dewletê" binavkirin de bike û nehêlê bajarên kurdan bên wêrankirin.

Di dawiyê de siyasetmedarên ku nikarîbûn serperiştiyê ji gel re bikin, tenê bi alîkariya mirovî re rabûbûn jî di nav gel de tên rexnekirin. Aliyên ku hevdû rexne dikin û eşkere dikin ku ew maxdûrên serkutiya PKK'ê û hebûna rewşa aloz in di dema pevçûnan de ji bilî banga 'çekan bêdeng bikin' pê ve tu hewldanên nîşan nedabûn. Baweriya xelkê jî niha bi siyasetê lewaz bûye.

**Azmûnên efsaneyî yên yekîtiyê!**

Di siyaseta kurdên Bakûr de, lêgerîn û hewlên yekîtî, kongre û bereyan di sala 1920'an de destpê kiriye. Di dawiya salên 1920'î de tecrûbe ya rêxistina Xoybûnê ya ku serhildana Araratê birêxist 20 salan ajot. Ev ezmûn li Bakurê Kurdistanê weke yekem rêxistina ku bi formeke kongreyî tevgeriyayî tê zanîn. Herwiha rêxistina Azadî ya ku ku beriya Xoybûnê avabû û ji gelek şexsiyet û serkirdên cuda pêk dihat jî xwedî şewazeke bi vî rengî bû. Azadî ya ku serperiştiya serhildana 1925'an kir û mîrateya xwe ji Xoybûnê re hişt.

Li Bakur di navbera salên 1970-2000'î de azmûnên weke UGD, Tevger jî weke nûmûne dikarin bên destnîşankirin. Di sala 1999'an de jî li Ewropayê li ser xeta PKK'ê Kongreya Netewî ya Kurdistanê (KNK) hatiye avakirin. Di nav KNK ya ku di destpêkê de ji aliyên cuda, ji şexsiyet û aliyên siyasî pêk dihat di demên dawîn de tenê rêxistinên bi ser PKK'ê mane.

Li Başûr di dawiya salên 1980'yî heta salên 1990'î layanên siyasî di Bereya Kurdistanî de cih digirtin û wek kongreyekî tev digeriyan.

Li Rojavayê Kurdistanê jî di demên dawiyê de hemû layanên siyasî di bereyên ENKS û TEV-DEM de gihane hev.

Li aliyê din li Rojhilat danûstendin û diyaloga PDKÎ û Komela Zehmetkêşan wek nîşaneyên lêgerînên pragmatik derdikevin holê.

Hewldanên herdû xetên girîng û hêzdar yê siyaseta kurd; PDK û PKK herçend bi civîn û lîjneyên amadekariyê ji bo Kongre û Konferansa Netewî hewldan jî, ji ber pevçûnên herêmê û beşdariya mîhwerên dijber, daxwaza yekîtiyê di siyaseta kurd de weke remzeke xeyalî cihê xwe girtiye.

Li Bakur, şerê dijwar, nebûna jêrzemîna demokrasiyê dide xuyakirin ku divê siyaset ji bo yekîtiyê li benda demsala aştiyê be.

Ligel aliyên îslamî, xeta PSK/HAK-PAR, 4 partiyên rêbaza PDK'ê didomînin herwiha PAK û gelek rêxistinên çepgir ê li Ewropayê siyasetê dikin, li ser vê meseleyê nîqaşên entelektûelî birêve dibin. Herî dawî biryara yekîtiya ya hin kadroyên PDKT û KADEP'ê û banga PAK'ê ya "yekgirtineke di bin banekî de" careke din di rojevê de cih girtin. BasNûçe li ser van nîqaşan û lêgerîna yekîtiyê di siyaseta kurd de dosyayeke taybet amade kir. Di vê dosyayê de, em bi siyasetmedar, nivîskar, akademîsyen û rewşenbîrên kurd re li ser hewldanên yekîtiyê sedemên pêknehatina yekîtiyê axivîn.

## Parlementerên HDP'ê ji bo yekîtiyê çi difikirin!

**Adem Geverî: Hewceyî pê nîne ku cudahî bibin yek**

Gelo ma hewce ye bibin yek? Bi ya min ne hewece ye, ji ber ku xwediyên fikrên cuda û îdeolojiyên ji hev cuda ne. Li Tirkiyê zêdetirî pêncî partî hene. Li Kurdistanê çar pênc partî hene. Divê ev nebe pirsgirêk. Di raya giştî de ji ber pirsgirêka kurdan dibe ku hêviyek wiha hebe lê şaristaniya kurdan xwediyê bawerî, mezheb û îdeolojiyên cuda cuda ne. Temsîlkarên wan ji ber sedeman berê xwe didin nêrînên cuda. Her wekî hûn dizanin hin ji van partiyan berê hatine vekirin. Lê li gor min ev nabe pirsgirêk. Ziyana ku dewletê li nava Kurdistanê pêk anî gelekî mezin e. Têgihiştina dabeşkirin, perçekirin û xirabkirinê heye. Mixabin ev kurdan ji hev dûr dike. Ka çawa ji bo rakirina parêzbendiyan AKP, CHP û MHP bûn yek divê em jî ji bo karên baş bên cem hev lê bi daxwaza xwe, bi partiya xwe, bi hesasisiyetên xwe yên îdeolojîk, bi nasnameya xwe... Li gel vê em dikarin çalakiyên xwe yên dîsa û hewla xwe bidomînin.

**Altan Tan: Têgihiştinên egosantrîk rê li ber yekîtiyê digirin**

Yekîtiya kurdan gelekî muhim e. Wekî miletên din di nava kurdan de jî mirovên xwedî fikr, îdeolojî û mezhebên cuda cuda hene. Ka çawa di alman û îngilîzan de sosyal-demokrat, sosyalîst-lîberal, demokratên mesihî hene di nava kurdan de jî têgihiştinên siyasî yên cuda hene. Ya girîng ji bo berjewendiyên pevpar yên kurdan keda bidestxistina mafan e. Mesela di warê daxwaza perwerdeya zimanê dayikê, rêveberiya herêmî, bikaranîna kurdî di qadên kamûyî de û fermîbûna zimanê kurdî de divê yekîtiyek pêk bê. Mezintirîn bendava li ber yekîtiya kurdan têgihiştina egosantrîk e. Yenî mezintirîn bendava li ber siyasetê ev e. Herkes berjewendiyên partî û tevgera xwe li pêşiya berjewendiyên giştî dibîne, sedema bingehîn ev e. Ne tenê komek, partiyek wiha dike. Bi giştî hemû kom û partî wisa dikin.

**Mir Dengir Firat: Bila mezin be, bila ya me hemûyan be**

HDP û partiyên din heke xwediyê heman îdeolojî û armancê bûna ji xwe wê bibûna yek partî, wê yek partiya kurdan hebûya. Tê wê wateyê ku partiyên xwedî îdeolojî û armancên cuda hene û tenê kurdbûn têrê nake. Hewcehî bi hin tiştin din jî heye. Sedemên ku ew partî avakirin çi bin HDP jî bi armanc û têgihiştina xwe ya îdeolojîk hatiye avakirin. Dikare li gel partiyên siyasî yên nêzîkî xwe, nêzîkî îdeolojiya xwe, têgihiştina xwe di wî warî de hevkariyê pêk bîne. Gotinek heye; " bila biçûk be bila ya min be". Çend partiyên kurdan hene, em bêjin heft. Divê beriya her tiştî di nava wan de yekîtî hebe. Divê ev hejmar hindî ku diçe bê kêmkirin. Dîsa ez ne li ser wê fikrê me ku hejmara wan kêm bibe û berdewamiya hebûna wan, bihevrebûna wan hebe. Hindî ku min fahm kirî hewldanek wiha heye. Heke bi rastî jî bawerî bi vê yekîtiyê hebe, daxwaza gihiştina armancekê hebe, li şûna têgihiştina " bila biçûk be lê ya min be", " bila mezin be lê ya me hemûyan be", li holê be. Li gor texmîna min ev dê hindî ku diçe zêdetir bibe. Dibe ku di nava partiyekê de gelek fikrmn cuda hebin lê heke di xalên hevpar de hûn bikaribin bibin yek wê demê hûn ê bibin partiyek siyasî.

**İmam Taşçıer: Ji derveyî HDP'ê alternatîf pêk nayê**

Beriya salên 80'yî li Kurdistanê, di despêka kemilîna tevgerên kurdan de bi dehan fraksiyon û partî çêbûn. Fikrên wan ên heyî li gor şert û mercên wê demê guncaw bûn û pêş ve çûn. PKK jî yek ji wan bû. Hin hebûn ku nekarîn tekoşîna fikra xwe anku bernameya xwe berdewam bikin. Roj bi roj marjînelîze bûn. Yên qadro û girseya wan li kolanan ditêkoşîn tevlî PKK'ê bûn. Heftê, heştêyê wan ji sedî li dijî pergala PKK'ê bernameyên xwe ava kirin. Ez bi çavê dijminahiyê li tu partiyên kurdan nanêrim, qadên her yek ji wan, rengên wan wan cuda ne. Mesafeya min ji hemûyan re yek e. Divê niha li Bakurê Kurdistanê hemû partiyên kurdan di nava yekîtiyekê de bin lê mixabin em ne li wê derê ne.

Çenda ez dixwazim bêjim ev e; heke nikarin li kêleka HDP'ê bin bila ew bi xwe bên cem hev. Nefamkirina vê têgihiştineke egosantrîk e. Anku pêkhateya marjînalîze dibe piştî demekê radîkal dibe. Her dibêje ku; ya herî rast ez dibêjim. Min deh salan gelek hewl da ku wan bînim cem hev. Lê di dawiyê de me nekarî yek ji wan jî bînin cem hev. Di hin meseleyên aktuel de dihatin cem hev. Derketina alternatîfek Kurdistanî ji derveyî HDP'ê ne mimkûn e. Li gor nêrînên min ên bîst salên dawî û tecrûbeyên min ev ne mimkûn e. Ji derveyî vê çi dimîne? Anku ji bo avakirina hêzeke alternatîf divê potansiyelek hebe. Divê bi miletî re eleqedar be.






## Çima partiyên siyasî yên kurdan mezin nabin, perçe dibin?

Alîkari Serokê Giştî yê PSK'ê Bayram Bozyel: Ji bo yekîtiyê dem lazim e

Eşkere ye ku PKK di warê çareserkirina pirsgirêkê bi riya şîddetê hatiye astekê. Nemaze jî ev şerê xendekan ji bo kurdan bû sedemê têkçûnên siyasî, mirovî û îqtîsadî. Ji vî şerê ne tenê miletê kurd mexdûriyetên mezin jiyan. PKK jî wekî qadro û polîtîka têkçûnek jiya. Ji vî warî ve mirov dikare bêje ku ji bo kurdan dema têkoşîna bi rêya çekan xilas bûye. Em wekî PSK ev çil sal e li Tirkiyeyê ji aliyê Kurdistanî ve çareserkirina pirsgirêka kurdan bi rêya rêbazên aştiyane diparêzin. Evqas tecrûbeyên çêbûyî vê rastiyê zêdetir derdixin pêş. PSK her tim hebû û di vê merhalê de bi nasnameyeke legal derket û pêviya wê bi bikaranîna tevgerek din ya siyasî û lêgerînên legal tune ye. Ji ber vê qadroyên esasî yên PSK bi nasnameya xwe xebatên xwe dimeşînin. Hin hevalên me li gel HAK-PAR'ê man. Ji bo ku li gel wê girseyê carek din bên cem hev hewcedarî bi demê heye. Em ne li wê baweriyê ne ku ev pêvajo bi temamî xilas bûye.

**Serokê Giştî yê PDK Bakur Sertaç Bucak: Ji bo yekîtî û hevkariyê sebr divê**

PKD Bakur li Kurdistanê yekem partiye ku hatiye avakirin. PDK Bakur li Tirkiye ya salên 1960'î ku herkes ji kurdbûna xwe ditirsiya wek partiyek ku xeta Barzanî bi cesaret diparêze derket holê. Divê em ji hevalên din bipirsin ka çima fikra yekîtiyê hatiye rojevê. Çima ji PDK Bakur veqetiyan? Armanca wan çi bû? Dema hûn behsa avakirina yekîtiyê bikin divê rastiyeke wê hebe. Di warê yekîtî û hevkariyê de divê sebr û sebat hebe. Divê ked bê dayîn. Yekîtî ked û sebrê dixwaze. Heke hewceyî bi vê hebe divê xebat bê kirin. Em di vî warî de xwedî hewl û xebat in. Em ê bixebitin ji bo ku herkesên wekî me difikire li dora partiya me bicivînin. Me beriya salekê li gel pênc partiyên Kurdistanê xebatek hevpar pêk anî. Hêj jî ev xebata me ya hevpar û hevkariya me berdewam e. Me konferansek hevpar pêk anî. Di nava partî û saziyên me de civateke baweriyê jî heye. Ji bo ku em vê xebatê zêdetir pêşve bibin em dixebitin û ev xebatên me di nava hevsengiyekê de ne û ev yek ji temamiya hêzên Kurdistanî re vekirî ye. Ez ji kesên li ser xeta PDK'ê ne dibêjim; 'yên ku dibêjim em yekîtiya dixwazin çima tevlî hevkariya partiyên Kurdistanî nabin? Ma ne dê blokek Kurdistanî ava bikirane? Siyaset ne tenê bi gotinê, bi çalakiyê çêdibe. Em ev pênc sal e bi hevkariya pênc partiyan polîtîkaya xwe ya Kurdistanî isbat dikin. Ji bo kesên xeta PDK'ê diparêzin adresa qedîm PDK Bakur e. Em ji bo pêkhatina vê çendê bi sebat in. Ji bo ku birayên me bigehijin partiya xwe em ê hemû fedakariyên hewcedar bikin.

**Serokê PDK-T Mehmet Emin Kardaş: Yên partiyên cuda ava dikin ne ji dil in**

Ji yekîtiya siyaseta kurdan ya li Bakur normaltir tiştek nîne. Dibe ku li ser hin xalên netewî em wek hev bifikirin. Lê gotarên me gelekî cuda ne. Bawer nakin ku ev mesele bi avakirina standan û belavkirina daxuyaniyan çêbibe. Divê em gelê xwe bi awayekî cidî bi rêxistin bikin û bînin cem hev. Divê em dengekî bilind ji partiyên xwe derbixin ji bo birêxistinkirina wan. Dema em vê nekin û pênc şeş partî tên cem hev û standan ava dikin heke çapemenî ji me zêdetir bibe wê demê tê wê wateyê ku ev deng nagihije tu kesê. Em girîngiyê bidin birêxistinbûnê. Ez li wê baweriyê me ku partî li hev bicivin dê ji bo tifaqan dengekî pêk bînin. Yên heman fikrî diparêzin lê rêbazên cuda bi kar tînin nikarin bên cem hev. Tenê dikarin di nava diyalogê de bin. Ez fahm nakin li gel hebûna PDK-T çima partiyek din ava dikin. Niha jî behsa yekîtiyê dikin, heke yekîtî hebûya hûn çima çûn û we partiyên cuda ava kirin. Em vê çendê samîmî nabînin.

**Serokê PAK'ê Mustefa Özçelik: Yên wekî hev divê bibin yek**

Beriya her tiştî ez wisa difikirim ku şerê li Bakurê Kurdistanê bû sedemê têkçûna gelek destkeftan. Di vê meseleyê de li gorî fikra me rola siyaseta xelet ya PKK û HDP'ê û bersiva dewletê ya xelet ya li hember vê siyasetê heye. Li Bakurê Kurdistanê rêyeke nû, şêwazeke nû lazim e. Lê ne mimkûn e ku siyasete 30-35 sal e bi cih bûyî bi carekê bê derbas kirin. Divê em rastiyê bibînin. Hebûna li Bakurê Kurdistanê prosesek saxlamtir, avakirina rêya çareseriyekê daxwaz dike û hewcedariya vê jî bi demê heye. Du aliyên mudaxeleya prosesa îro hene. Ya yekem divê li Bakurê Kurdistanê partiyên ji aliyê siyasî û fikrî ve nêzîkî hev di nava partiyekê de bibin yek. Ya duyem, yên ne bin yek jî divê di nava tifaqeke Kurdistanî de bin. Heke ev herdu pêk bên dê rêyek çêbibe. Partiyên ji aliyê siyasî ve wek hev in, ku em jê re "potansiyela Kurdistanî ya demokratîk û azadîxwaz" dibêjin, divê di bin banê yek partiyê de bibin yek. Li gel kurdên islamîst, kurdên sosyalîst yan jî derveyî xeta me eniyeke tifaqê dibe ku pêk bê. Em behsa du meseleyên ji hev cuda dikin. Îro herdu jî elzem in. Ev meseleyek heyatî ye ku; yên wekî hev bibin yek, yên ji hev cuda jî tifaqekê pêk bînin.

**Serokê ÖSP'ê Sinan Çiftyürek: Di warê tevgerînê de pirsgirêka me nîne**

Rewşa Bakurê Kurdistanê wiha berdewam nake. Ji herdu alî bi dehan can hatin dayîn. Ev rewş berdewam nabe. Dê ji nû ve mase bê danîn û li gor fikra min divê ev mase ne li imraliyê bê danîn. Ev hevdîtin divê di navbera temsîlkarên miletê kurd ên herî berfireh û dewletê de li derveyî imraliyê li ser maseya muzakereyê pêk bên. Em dibêjin ku li Bakur bingeha yekîtiya kurdan gav bi gav ava dibe. Ji ber girsgirêkên siyaseta PKK û HDP'ê yekîtî pêk nayê. Divê li gel hêzên demokratîk- netewî yên kurdan yekîtiyekê pêk bînin. İsrara me ji ber vê ye. Wekî Rojava bila li Bakur têgihiştinên cuda pêk neyên. Hindî ku ji destê me tê em paradîgmayek hevpar didin zorê û em ê vê zordayînê berdewam bikin. Em dikarin bi hev re tevbigerin û karên hevpar bikin. Em dikarin bangewaziyên hevpar bikin. Ji aliyê pêkvebûna li gel prtiyên din pirsgirêka me tune ye. Em dibêjin ku, li Bakur em yekîtiyê bidin zorê.

**Serokê HAK-PAR'ê Refik Karakoç: Niha dengên demokratîk nayên bihîstin**

Gelek hewldanên bêencan hene derbarê yekîtiyê de. Sekna me ya derheqê yekîtiyê de zelal e. Heke dê yekîtiyek pêk bê divê alî xetên xwe yên sor li rexekî bihêlin, divê li ser bingehek rast yekîtîyek bê avakirin û ev jî bi qaîdeyan bê piştrastkirin. Li ser bingeyek rast deriyê HAK-PAR'ê ji her kesî re vekiriye. Em li gel herkesê hevkariyê dikin, qewetên xweli hev zêde dikin, em ê bibin yek jî û em hewldana vê jî didin. Em dizanin ku yekîtî ne karekî hêsan e. Sedemê vî jî ne gel, lê saziyên siyasî û rêveberên wan in. Ev kêmasî ya siyasetmedarên kurdan e, ya rewşenbîrên kurdan e, ji aliyê miletî ve pirsgirêk nîne. Em dizanin, dibînin ku li ser bingeha demokratîk alîkariyeke mezin dide siyaseta kurdan. Ne hêsan e ku di nava teqîna bombeyan de mirov siyaseta demokratîk bigehîne girseyan. Di demek nêzîk de dê HAK-PAR dê bigehe girseyan û di nava her cure çalakiyên siwîl de dê xwe nîşan bide. Têkoşîna kurdan ya di qada demokratîk de dê serkeftinên mezin pêk bîne.

**Sekreterê Giştî yê Azadiyê Sitki Zilan: PKK proseyê û siyasetê sabote dike**

Ji ber ku temsîla siyasî ya gelê Kurdistanê perçe perçe û belav e encamên tên hêvîkirin pêk nayên. Her hewldana xizmetê ji bo tifaqa netewî dike erênî ye. Ev armanc di nava sedemên rêveçûna me de xwedî cihekî sereke ye. Yên di hin xalan de hevpar difikirin di heman partiyê de cih digirin. Îstîsnaya vê partiya hevpar e. HDP bi vê îdîayê kete rê. Lê ji ber ku ji vesayetê derbas nebû, serneket. Em wekî Azadî her tim bûn alîgirên tifaqê û me ev fîîlen jî pêk anî. Alîkariya hilbijartinê ji bo HDP'ê di vê çerçoveyê de bû. Ji bo muxalefeta şerê piştî hilbijartinê, xebatên li gel partiyên Kurdistanî di vê çerçoveyê de ne. Bihevrebûna li gel yek partiyê tiştekî erênî ye lê tifaqên netewî zêdetir watedar in. Di paşdeçûna dewlet û hikûmetê ya li Bakur wekî Tevgera Azadî rola me ya dîrokî heye. Me veqetîn leztir kir lê PKK 'ê ev prose û siyaset sabote kir. Qendîl li şûna " eniya netewî û Kurdistanî", "eniya terorê" tercîh kir. Berpirsiya me ya xilaskirina dagirkirina Kurdistanê ne ku rûxandina hikûmetê. AKP dê biçe lê li şûna wê yeke din dê were. Yên têgihiştin û fîîliyata wan ne demokratîk, derbarê "eniya demokratîk" de baweriyê nadin gelê Kurdistanê. Çiqas pêdiviya dewleta Tirkiyê ji bo guherîneke demokratîk hebe di serî da PKK, ji bo siyaseta kurdan jî pêdivî bi guherînê heye.





# Ji Barzanî banga rapirsiyê

Mehmet Salih Batırhan

Di tîrmeha 2014'an de DAIŞ'ê êrîşî xaka Rêveberiya Herêma Kurdistanê, (RHK) kiribû hewlda bû dawiyê li amadekariyên serxwebûna Kurdistanê bîne. Piştî şikestina êrişên DAIŞ'ê ya li hember Kurdistanê, siyaseta kurd dîsa mijara rapirsiya serxwebûnê anî rojevê. Di nava hefteyê de Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî, bang li aliyên siyasî yên kurd kir û wiha got: "Nakokiyên navxweyî bidin alîyekî û ji bo rapirsiya referandûmê li hev bicivin."Herwiha Barzanî, tekez kir ku divê amadekarî ji bo rapirsiyê bçn kirin û alî bi berpirsiyariya xwe rabin.

Barzanî sala borî biryar dabû ku rapirsiya serxwebûnê beriya hilbijartina Serokatiya Amerîkayê were kirin.

Beriya niha Goran û Yekîtiya Niştimaniya Kurdistanê (YNK) eşkere kiribûn ku bi şertê avktîvbûna parlementoyê ew ê piştgiriya rapirsiyê bikin. Herwiha hat zanîn ku herdu partiyan dev ji wî şertî berdane û bi desteyeke hevbeş dixwazin ligel Partiya Demokrata Kurdistanê (PDK) rûnên. Li aliyê din YNK û Goranê bi alîkariya destêwerdanên Îranê yên ser RHK'ê tên tewanbarkirin amadekariyan li ser wê yekê dikin bi desteyeke hevbeş serdana Bexdayê jî bikin. Amaje li ser wê yekê heye ku ew ê Serokê Tevgera Goranê Newşîrwan Mistefa serperiştiya wê desteyê bike.

Li aliyê din hat ragihandin ku ji bo pêkanîna Operasyona Mûsilê pisporên leşkeri li Hewlêrê kom bûn. Enstîtûya Lêkolînên Rojhilata Navîn (MERI) jî li Hewlêrê bi navê Operasyona Mûsilê û komxebatek lidarxist. Hat zanîn ku rayedarên Wezareta Pêşmerge, nûnerên Yekitiya Ewropayê (YE) pisporên leşkeri yên Brîtanya û Dewletên Yekbûyî yên Amerîkayê (DYA) beşdarî vê komxebatê bûne.

> Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî da zanîn ku dema wê yekê hatiye ku rapirsî bê rojevê û bang li aliyên siyasî kir ku ji bo referandûmê amadekariyan bikin. Barzanî di peyama xwe de ji aliyên siyasî jî xwest ku dev ji milmilaneyên navxweyî berdin û ji bo referandûmê li hev kom bibin.

### Barzanî: Ji bo referandûmê amadekariyan bikin

Serokê Rêveberiya Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî banga civînê li hemû aliyên siyasî yên Kurdistanê kir û eşkere kir ku Dîwana Serokatiya Herêma Kurdistanê wê danûstendinê bi aliyên siyasî re bike. Hat zanîn ku îro danê êvarê Serokê Rêveberiya Herêma Kurdistanê (RHK) Mesûd Barzanî di derbarê amadekariyên rapirsiya serxwebûnê de bang li hemû aliyên siyasî kir û ji wan daxwaz kir ku ji bo rapirsiyê li hev bicivin. Herwiha Barzanî eşkere kir ku nabe aliyên siyasî nakokiyên navxweyî derxin pêş û derfeta dîrokî ji dest bidin.

Peyama Barzanî ya ji bo aliyên siyasî wiha ye: "Hêz û aliyên siyasiyên Kurdistanê, rewşa navçeyê bi qonaxekî nû da derbas dibe û bi hemû nirxandinekî guhertinên mezin li holê de ne. Gelê Kurdistanê û ezmûna wê jî li ber qonaxekî hestiyar û çarenûs de ye, nabê ev derfeta vê carê ji bo gelê me hatiye pêş, ji dest bidîn. Îro pêgeha gelê Kurdistanê li ser asta navdewletî asoyekî xwe ya ronak heye û li şerê terorê jî bi hewla Pêşmergeyên qehreman û li saya xwîna şehîdên me û bi xweragiriya xelkê Kurdistanê û piştevaniya hevpeymanan, serkeftineke mezin bi dest hatiye û terorîst tûşî şikestên mezin hatin lê belê metirsiya wan her maye."

Di berdewamiya peyama xwe de Barzanî bang li hwelatiyên Kurdistanê jî kir û wiha got: "Hemwelatiyên Kurdistanê! Ji bo me li vê qonaxê da hîç armancek ji mafê çarenûs û serbixweyiyê bilindtir û pîroztir nîne, nabê rê bidîn ev pirsa çarenûssaz bibê qurbana nakokî û gengeşeyên navxweyî. Ji bo vê yekê daxwaz ji hemû hêzên siyasî yên Kurdistanê dikim li zûtirîn demî da rêwşuwênên pêwîst li ber bigrin ji bo dirustkirina komdengiya niştîmanî li ser pirsa referandûm û serbixweyî û hengava yekem ewe ye li gel Bexda bikevîn guftûgoya eşkere û birayane. Ji bo vê mebestê hemû hêz û aliyan vedixwînim ku civîneke taybet ji bo vê babetê encam bidîn ji bo biryardana li ser hengavên paşarojê û ji bo ev e jî Dîwana Serokayetiya Herêma Kurdistanê peywendiyê bi hemû aliyan ve dike."

### Parlementerê PDK'ê Silîvanî: Ji bo rapirsiyê amadakarî divê

Parlementerê PDK'ê li Parlamentoya Iraqê Sarhan Silîvanî, geşedanên siyasî, banga Mesûd Barzanî ya di derbarê rapirsiyê de ji BasNûçe'yê re şîrove kir. Silîvanî ragihand ku dema wê yekê hatiye ku siyaseta kurd li ser rapirsiya serxwebûnê bibe yekdeng û piştevaniya xwe ji referandûmê re bîne ziman. Herwiha Silîvanî banga Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî ya di derbarê rapirsiyê jî de bi bîr xist û wiha axivî: "Nabe kurd derfeta dîrokî ji dest bidin. Banga Serok Mesûd Barzanî bangeke dîrokî ye. Divê siyaseta kurd li vê bangê xwedî derkeve û piştevaniya wê bangê bike. Hewce ye aliyên siyasî demildest dev ji berjewendiyên hizbayetî û şexsî berdin. Eger ev fersenda dîrokî ji dest bê dayîn wê arîşeyên mezintir pêk werin û xelkê kurd bêhtir tengav bibe. Divê demildest dîroka rapirsiyê bê diyarkirin û xebat li ser wê bê kirin."

Herwiha Silîvanî li ser îddîayên ku YNK û Goran daxwaza danişînê li PDK'ê kirine jî rawestiya. Silîvanî daxuyand ku PDK her tim ji diyalogê re amade ye û ew dikare li gel hemû partiyan di nava diyalogê de be. Herwiha Silîvanî tekezî, li ser wê yekê jî kir ku ew ê PDK'ê beşdarî civîna sêqolî nebe û dikare di demên cuda de bi aliyên siyasî re civînên duqolî pêk bîne.

### Parlementera Goranê Îbrahîm: Em piştgiriya serxwebûnê dikin

Parlementera Goranê li Parlementoya Iraqê Êvar Îbrahim geşedanên siyasî ji BasNûçe'yê re şîrove kir. Îbrahim banga Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî ya ji bo serxwebûna Kurdistanê bi bîrxist û wiha axivî: "Weke Tevgera Goran ji sedî sed em piştgiriya serxwebûna Kurdistanê dikin. Lêbelê beriya referandûmê divê di navbera aliyên siyasî de hevgirtinek hebe. Eger em qeyrana darayî û siyasî çareser nekin em ê çawa behsa serxwebûnê bikin. Eger em van arîşeyên ku xelkê me tengav dikin çareser nekin em ê çawa behsa serxwebûnê bikin. Divê em werin cem hev arîşeyên siyasî çareser bikin û piştre ji bo serxwebûnê nexşerêyekê peyda bikin. Ajandaya Goranê ji bo serxwebûnê heye, lêbelê divê em referandûmê din ava aştiyê û aramiyê de pêk bînin. Qeyraneke mezin a darayî heye. Ji bo referandûmê hewcedarî bi xebata Lîjneya Hiilbijartinê heye. Ji bo vê yekê jî hewcedarî bi mûçeyeke mezin heye. Divê aramî peyda bibe û rewş biguhere."

### 'Me randewû ji PDK'ê xwestiye'

Di berdewamiya axaftina xwe de Parlementera Goranê, Îbrahîm, eşkere kir ku wan daxwaza hevdîtinê li PDK'ê kiriye û ew dixwazin ligel PDK'ê rûnên. Herwiha, Îbrahîm eşkere kir ku PDK ji hin xalên rêkeftina Goran û YNK'ê nîgaran e û wiha berdewam kir: "PDK ji hin xalên rêkeftrina Goran û YNK'ê nîgeran e. Ji ber vê çendê YNK û Goran dixwaze bi PDK'ê re rûnên. YNK û Goranê doza hevdîtineke sêqolî li PDK'ê kirin. Eb diyalog ew ê di berjewnediya kurdan de be. Kurd di qonaxeke dîrokî de derbas dibin. Li aliyekî şerê li dijî DAIŞ'ê li aliyê din jî meseleya Kerkûkê heye. Ji sala 2013'an heta niha Bexda mûçeya Kurdistanê nade. Xelk perişan bûye. Divê PDK jî ji bo çareserkirina arîşeyan bi Goran û YNK'ê re rûne. Hewce ye em li Kerkûkê xwedî derkevin. Bi yekdengî ji bo ku Kerkûk bê ser Kurdistanê divê em xwedî helwest bin."

### Sekreterê YNDK'ê Xefûr Mexmûrî: Kurdistan ji Iraqê veqetiya ye

Sekreterê Partiya Yekîtiya Netewî û Demokratîk a Kurdistanê (YNDK) Xefûr Mexmurî, jî ji BasNûçe'yê re axivî û bal kişand ser geşedanên siyasî yên li Kurdistanê. Mexmûrî eşkere kir ku divê rapirsiya serxwebûnê demildest bê kirin û xelkê kurd di sala 2005'an jî de helwesta xwe ji bo serxwebûna Kurdistanê anîne ziman. Herwiha Mexmûrî rewşa Iraqê jî bi bîrxist û daxuyand ku bi navê Iraqê dewletek nemaye û ew feşkiliye. Mexmûrî wiha axivî: "Di rastiya xwe de dewleteke bi navê Iraqê tune ye. Hewcedarî li ser wê yeken hebû ku beriya şerê DAIŞ'ê Iraq wiha bihata dabeşkirin. Herwiha piştî rûxana rejima Seddam diviyabû Iraq bihata dabeşkirin. Sînorên Iraqê bi destê zorê hatine danîn. Sînorên wê ne sirûştî ne. Kurdistan ji xwe bi awayekî fîlî ji Iraqê veqetiya ye. Tu peywendiya me bi Iraqê re nemaye. Bi tenê ragihandina Kurdistanê maye. Di hilbijartina 2005'an de ji %98.5'ê xelkê kurd ji serxwebûnê re gotin 'erê.' Dixwazin bi zorê Kurdistan bi ser Iraqê ve biçespînin. Di demeke kurd de em ê dewleta xwe ragihînin. Dema Sovyet belav bû bi dehan dewlet avabûn. Tu dewletan referandûm pêk neanî."

> Li aliyê din hat zanîn ku YNK û Goranê daxwaz ji PDK'ê kirine ku ligel PDK'ê rûnên û ew amade ne bêyî destnîşankirina tu şertan ew ê piştgiriya rapirsiyê bikin. Herwiha hat zanîn ku PDK amadenîne bi desteyeke hevbeş a Goran û YNK'ê re rûne û ew amadeye di civînên duqolî ligel herdu hizban danîşe.

### 'Wê Serokatiyê RHK'ê arîşeyan çareser bike'

Mexmûrî, bal kişand ser banga Serokê RHK'ê Barzanî ya di derbarê serxwebûnê jî de û wiha axivî: "Divê partiyên siyasî di encûmenekê de lihev kom bibin û dev ji berjewendiyên şexsî û hizbayetî berdin. Mixabin navenda siyasesta kurd hatiye rûxandin. Ez di wê baweriyê de me ku divê hemû partiyên siyasî di encûmeneke berfirehte li hev kom bibin. Hewce dike hemû layanên siyasî di wê encümenê de lihev kom bibin di çareseriya arîşeyan de rol bigrin ser xwe. Ez di wê baweriyê de me wê Dîwana Serokatiya Kurdistanê bi mekanîzmeyeke wisa ligel aliyan danîşe û arîşeyan çareser bike."

### Qaradaxî: Goran ji PDK'ê re dibêje ew û YNK'ê xwedî yek îradeyê ne

Rojnameger Aza Hesîb Qaradaxî jî rêkeftina Goran û YNK'ê ya di 17'ê Gulanê de vajo kiribûn, daxwaza herdû aliyan a danîşîna ligel PDK'ê ji BasNûçe'yê re şîrove kir. Qaradaxî daxuyand ku PDK amade nîne ligel YNK û Goranê rûne. Herwiha Qaradaxî amaje li ser wê yekê jî kir ku Goran dixwaze ligel YNK'ê bi yek îradeyê li hember PDK'ê rûnê. Qaradaxî, helmetên Goranê yên çend mehên dawî jî bîr xist û wiha axivî: "Goran ev 2 sal in ji bo îstîkrara siyasî ya Kurdistanê têk biçe hewl dide. Sala par hewldan ku li Parlementoya Kurdistanê kûdetayê pêk bînin. Sîstema serokatiya Kurdistanê kirin hincet û xelk derxistin kolanan û hikûmet têk birin. Niha jî ligel YNK'ê rêkeftin çêkirin û dixwazin ji PDK'ê re bêjin ew xwedî yek helwestê ne. PDK dikare di civînên duqolî ligel wan danîşe. Lêbelê PDK wê bi civînên sêqolî ligel wan rûnenê."

Qaradaxî, banga Serokê RHK'ê ya ji bo serxwebûnê jî bi bîrxist û axaftina xwe wiha bi dawî kir: "YNK û Goran ew ê ji bo piştevaniya serxwebûnê şertên bînin pêş. Hemû pêkhateyên dînî û olî herwiha aliyên siyasî li benda wê yekê ne ku Lîjneya Hilbijartinê dest bi amadekariyên hilbijartinê bike. Ew ê Dîwana Serokatiyê bi aliyên siyasî re li ser meseleyê biaxive."

### Rojnameger Bextiyar: Haşdî Şabî provakasyonê didomîne

Milîşeyên Haşdî Şabî yên ji aliyê Îranê ve tên piştevanîkirin û bi hinceta şerê li dijî DAIŞ'ê li navçeyên Kurdistanê provakasyonan pê tînin dîsa li ser kar in. Hat zanîn ku milîşeyên Haşdî Şabî, li navçeya Xurmatû ya Kurdistanê nakokiya mezhebî kûr dike û êrîşî kurd û tirkmenên süne mezheb dike. Rojnamegerê Aram Bextiyar ê li herêmêyê ji BasNûçe'yê re axivî û eşkere kir ku ji ber êrîşî û fişara Haşdî Şabî ya li herêmê bi hezaran kurd û tirkmenên süne mezheb bajarê xwe terk dikin û dibin eware.

Di meha nîsanê de li navenda Xûrmatûyê milîşeyên Haşdî Şabî êrîşî xelkê sivîl ê kurd kiribûn. Herwiha bi mûdaxaleya Pêşmergeyan Haşdî Şabi dev ji êrîşên xwe berde bûn. Bi êrîşên DAIŞ'ê yên sala 2014'an de Pêşmergeyan dest bi parastina bajar kiribûn û bajar kontrol kiribûn.



# Şanda Iraq û Amerîkayê li Hewlêrê bû

Serdanên dîplomatîk ê ji bo Hewlêrê jî berdewam dikin. Hat zanîn ku Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî pêşwaziya Şêwirmendê Asayîşa Netewî ya Iraqê Fale Feyaz û Nûnerê Obama yê hevpeymaniya şerê dijî DAIŞ'ê Brett McGurk û Balyozê Amerîka li Iraqê Stuart Jones û Konsolê Amerîka li bajarê Hewlêrê Matthias Mitman û hejmarek ji berpirs û fermandeyên serbazî û emnî yên Iraq û Amerîkayê pêkhatibûn kir.

Di civînê de şanda mêhvan pîrozbahiya serkeftinên Pêşmerge ya li şerê dijî DAIŞ'ê li bereya Bakur û Rojhilata Mûsilê li Barzanî kirin û bi kurtî rewşa meydanî ya bereyên rûbirûbûna endamên DAIŞ'ê li Fellûce û parêzgeha Nînowa û her wiha Sûriye ji bo Barzanî bahs kirin.

Di hevdîtinê de Şêwirmendê Asayîşa Netewî yê Iraqê pesnê rola Barzanî ya li rûbirûbûna gefên mezin û şerê terorîstan de bilind nirxand û daxwaza kûrtirkirina bawerî û hemahengî û karê hevbeş ya di navbera Hikûmeta Herêma Kurdistanê û Hikûmeta Iraqê kir û tekez li wê yekê kir ku Herêma Kurdistanê û hêzên Pêşmerge hevbeşekî rasteqîneya Iraq û hevpeymanane li şerê DAIŞ'ê û azadkirina Mûsilê da û pabendbûna Hikûmeta Iraqê bi îltîzamatên emnî û serbazî ya di navbera her dû aliyan li şerê azadkirina Mûsilê de dûpatkir.

Herwiha li beşekî dinê civînê de her yek ji Nûnerê Obama li hevpeymaniya dijî DAIŞ'ê û Balyozê Amerîka li Iraqê behsa girîngiya hemahengiya di navbera Herêma Kurdistanê û nehiştina astengî û bi şaşî têgihîştinên di navbera wan de kir. Her wiha palpiştî û piştevaniya welatê wan ji bo hêzên Pêşmerge û hêzên Iraqiyan li şerê dijî DAIŞ'ê dûpat kir.

Li aliyê din di beşekî din ê civînê de Barzanî ji bilî balkişandina wê yekê ku DAIŞ dijminê hevbeş ê hemû aliyeke, pîrozbahiya serkeftinê li hêzên Iraqiyan ya li şerê Fellûce kir û ragihand ku ewlewiyeta serekî ya Herêma Kurdistanê şerê DAIŞ'ê. Herwiha hemahengiya di navbera Herêma Kurdistan û Iraq û Amerîka bi pêwîst zanî ji bo yek alîkirina giriftan û têkşikandina komên tûndrew û eve jî xisterû ku li karê hevbeş da pêwîst e li nîgeraniyên hevdû têbigihin û li ber girtina şaşiyan jî bo muameleya li gel pêşhatan dibê sedema kûrtirbûna giriftan.

Li civînê tekez li hebûna plana hevbeşa siyasî û emnî û serbazî ya azadkirina Mûsil û qonaxa piştî azadkirina Mûsilê kir û behsa kêşeyên di navbera Hewlêr û Bexda ya di derbarê neft û giriftên aboriyan kir. Hat ragihandin ku di civînê de Mesrûr Barzanî Şêwirmendê Encûmena Asayîşa Herêma Kurdistanê û Kerîm Sincarî Wezîrê Navxo û Wezîrê Pêşmerge bi Wekalet û Felah Mistefa Berpirsê Fermangeha Peywendiyên Hikûmeta Herêma Kurdistanê amadebûn.



### New Zeland û Awûstralya ligel Pêşmerge ne

Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî di hevdîtinên dîplomatîk yên hefteya borî de pêşwaziya James Mornû Balyozê New Zealand li Iraqê û Jonasan Gêlbêrt Cîgirê Balyozê Awustralya li Iraqê jî kir.

Di hevdîtinê de şanda New Zelandî û Awûstûralyayî pesnê rola Pêşmergeyên a li şikandina DAIŞ'ê de kir û pêzanînên xwe ji bo rola serkirdayetiya Barzanî li şerê dijî DAIŞ'ê derbirî û bi girîng û bi bandor dane zanîn. Xweşhaliya xwe jî nîşan dan ku li çarçêweya hevpeymaniya navdewletiya dijî DAIŞ'ê, welatê wan mil bi milê Herêma Kurdistanê dijî endamên DAIŞ'ê şer dikin û tekez kirin ku Pêşmerge bi azayetiya xwe, li şûna hemû cîhana azad şer dike û kariye endamên rêxistinê têkbişkîne. Paşê jî daxwaz ji Barzanî kirin têbînî û nêrînên xwe yên li ser rewşa navçeyê bixerû û wan zêdetir agahdar bike.

Barzanî ji mêvanan re behsa şerê DAIŞ'ê û gefan gelê Kurdistanê ku rûbirûyê bûne kir. Di derbarê şerê DAIŞ'ê û komên tûndrew de Barzanî tekez li wê yekê kiriye ku DAIŞ dijminê hevbeş ê hemû mirovayetiyê ye û li her cîhek azadî û mirovayetî hebê komên tûndrew êrîşê lê dikin. Her ji bo wê yekê jî cihê xweşhalî ye ku li ciheke gelek dûr ve ewên bawerî bi azadî û mirovayetî û jiyanê heye hatine beşdarî têkşikandina komên tûndrew de bikin. Barzanî tekez jî kir ku şerê DAIŞ'ê pêwîstî bi hemahengî û hevkariya ciddî ya civaka navdewletî heye. Di civînê de amadekariyên ji bo operasyona azadkirina Mûsil û peywendiyên di navbera Bexda û Kurdistanê û rewşa navçeyê jî hatin rojevê.



# Menbîc ket, Bab li rêye!

Murat Özdemir

Piştî ku Menbîc hat rizgarkirin û rêya têkiliya DAIŞ'ê yê bi cîhanê re hat girtin, tê pêşbînikirin ku Hêzên Sûriyê yên Demokratîk (HSD) ku pêşengiya wê Yekîneyên Parastina Gel (YPG) dike û ji aliyê NATO'yê ve tên piştevanîkirin, berê xwe bidin herêma Şehbayê ku bajarê Babê jî digire nav xwe. Ji ber ku gef û metirsiya DAIŞ'ê ya li ser xelkê herêmê zêde bûye û li gundên girêdayî Babê; Kawkilî, Sab û Yeran, Buxaz, Şawa, Qebasîn, Susinbat, Gumezî Şîh, Tel Cercî, Şibêran, Geîbe, Şêx Cerax, Belîxe, Qerî kilbîn, Ereb Weyaran, Berşaye û Mezrayê xelk dixwazin ji gef û xeteran bêne rizgarkirin. Li gor agahiyan li heremê DAIŞ'ê gelek kes kuştine û zêdetirî hezar kes jî revandine. Piraniya niştecihên Babê ku girêdayî Helebê ye û di destê DAIŞ'ê de ye, kurd in. Hevseroka PYD'ê Asya Abdullah ji bo alîkariya sivîlên herêma Şehbayê bang li rêxistin, sazî û dezgehên mirovî yên navdewletî kir.

Li hêla din li Bakurê Reqqayê jî ku hêzên kurd operasyon dabûn destpêkirin jî geşedanên nû rû didin. Piştî hêzên kurd bi piştevaniya hevpeymaniya navdewletî operasyona rizgarkirina Bakurê Reqqayê dan destpêkirin, rejîma Sûriyê jî bi piştevaniya balafirên Rûsyayê operasyon dabû destpêkirin û ketibû nav sînorên bajêr, lêbelê êrişa rejîmê ya li dijî bajêr şikestinek xwar û rejîm neçar ma ku leşkerên xwe vekişîne. Di şerê navbera rejîm û çekdarên DAIŞ'ê de 40 leşkerên Artêşa Sûriyê û 21 çekdarên DAIŞ'ê hatin kuştin. Piştî vê şikestinê rejîmê xwe ji parêzgehê dûr xist. Ev rewş jî ji aliyê pisporan ve wek 'teyîdkirina girîngiya hêzên kurd' hat şîrovekirin.

Li heremê ku geşedanên leşkerî û siyasî didomin, Rojava û Suriye bûye qada şerekî navdewletî, Tirkiye, Suriye û İran jî li dij pêşdeçûna hêzên kurd di nav lêgerîna hevkarî û piştgiriyê de ne.

Tirkiye li aliyekî ji neçarî li beramber hevkariya hêzên NATO'yê ku bi kurdan re hevkarî dikin û li Rojavayê Feradê berbi Efrînê de pêşvediçin, bêdeng dimînê, li aliyê din, amadekariyên piştî paqijkirina DAİŞ'ê dike. Li gor agahiyan Tirkiye û rejîma Sûriyê bi navbeynkariya Îran û Cezayîrê li Cezayîrê hatine gel hev û her çar dewletan di civînekî de li dijî kurdan hevkariya xwe anîne ziman. Cezayîr di sala 1975'an de jî li dij Başûrê Kurdistanê, di navbera rejimên İran û İraqê de navbeynkarî kiribû û bi vê rola xwe ya neênî jî di hiş û bîra kurdan de mabû.

### Norweç jî leşker dişîne Rojava

Li aliyê din li Rojavayê Kurdistanê hejmara dewletên endamên NATO'yê ku tevlî şer dibin zêde dibe. Leşkerên taybet yên Amerîka, Almanya û Fransa niha li Rojava ne û yekser li bereyan di milê hêzên kurd de şerê DAIŞ'ê dikin û herwiha baregehên xwe yên leşkerî li herêmê ava dikin.

Ji bilî van dewletên endamên NATO'yê herî dawîn Norwecê jî ragihand ku ew ê hêzek taybet ji bo piştevanî û perwerdeya HSD'ê di şerê li dij DAIŞ'ê de bişîne Rojavayê Kurdistanê.

Wezîrê Karê Derve yê Kobanê yê berê Îdrîs Nassan, Hevseroka Meclîsa Zagonsaz Fewziya Evdo û Nunerê ENKS Osman Muslîm Derbarê bûyerên heremê, Operasyona Menbîcê û geşedanên leşkerî û siyasî yên dawîn û pêwendiyên Rojava û dewletên NATO'yê ji BasNûçe'yê re nirxandin.

### Îdrîs Nassan: Şervan derbasî nav Menbîcê bûn

Wezîrê Karên Derve yê Kobanê yê berê Îdrîs Nassan di derbarê Operasyona Menbîcê de ragihand ku Encûmena Leşkerî ya Menbîcê ya bi ser HSD'ê de li hember DAIŞ'ê serkeftiye û derbasî nav taxên rojavayê Menbîcê bûne. Nassan wiha got: "Piştî Menbîc rizgar bû, wê deverên din jî ji DAIŞ'ê werin paqijkirin, ji ber ku xelkê herêma Şehba û gundewarên di navbera Menbîc û Babê û heta Ezaz û Cerablûsê, bangî hêzên HSD'ê dikin ku wan ji DAIŞ'ê rizgar bikin." Nassan got, eger herem neyê rizgarkirin xeter heye ku karesatek wek Şengalê dûbare bibe: "Ji bo wê yekê bo rizgarkirina xelkê deverê ew der hemû dê werin azadkirin. Ji xwe armanca rizgarkirina Menbîcê yek jê aramiya Rojava û deverê û ya duyem jî destpêka çaresariyekê tevahiyê ya li Sûriyê ye da ku rêya çareseriyeke siyasî û aramî pêş bikeve."

### 'Operasyon bi Menbîcê sînordar nabe'

Nassan got ku li gor pêwistiya leşkerî û ji bo qûtkirina riyên DAIŞ'ê wê plan werin danîn. Li gor xwesteka gelê herêma Şehbayê û bangawaziyên wan, wê operasyon ber bi herêma Babê ve bê firehkirin û wiha ragihand: "Di pêşerojê de bêgûman wê hemû deverên rojavayê Feradê ji Menbîc, Cerablûs, El Bab û heta herêma Efrînê wê werin rizgarkirin. Ji ber ku hebûna DAIŞ'ê ya li vê herêmê wê herdem bibe sedema têkbirina aramiya herêmê û zirarê bide xelkê. Ji ber wê yekê divê DAIŞ ji tevahiya xaka Rojava û Sûriyê were paqijkirin. Beriya Minbecê me destbi operasyona Bakûrê Reqqayê kir ku têkilî di navbera gundewarên Bakûrê Helebê û Bakûrê Reqqayê de werin qûtkirin. Eger ev der wiha bi hev re girêdayî bimîne, DAIŞ'ê wê alîkariyê ji xwe re peyda bike. Taybet jî ji sînorê Tirkiyê ji xwe re riyên alîkariyê dibînin. Ji bo ku DAIŞ'ê li vê herêmê têk biçe ev operasyon hat destpêkirin."

### 'Tenê hêzên kurd dikarin şer bikin'

Nassan dibêje ji bo ku Menbîc di nava gundewarên Bakûrê Helebê de ye û li ser sînorê Reqqa û sînorê Tirkiyê de ye de gelek girîng e û wiha dewam kir: "Berî operasyona rizgarkirina gundewaran pêwistî bi Operasyona Menbîcê hat dîtin da ku girêdana van herêman bê qûtkirin û DAIŞ di herdu herêman de were dorpêçkirin, lawaztir bibe. Bêgûman dema ku Menbîc hat rizgarkirin, wê operasyona Reqqayê geştir bibe. Hêzên Sûriya Demokratîk nîşan daye ku tenê ew dikarin li ser erdê şer bikin û li hember DAIŞ'ê rawestin. Artêşa Sûriyê li Reqqayê pêş ket lê piştî 2-3 rojan DAIŞ lê vegeriya û ew herêm dîsa bi dest xist. Vê jî diyar kir ku tenê HSD dikare li hember raweste û DAIŞ'ê têk bibe."

### 'Hevkariya leşkerî, di warê dîplomasiyê de nîne'

Wezîrê Kantona Kobanê yê berê dibêje li Rojava heta niha hemû piştgiriya hêzen navdewletî di warê leşkerî de ye. Li gor Nassan gelek welat li kêleka HSD'ê yekser beşdarî şer dibin, lê di aliyê dîplomasiyê de gav nehatine avêtin û axaftina xwe wiha dibêje: "Li çendîn welatan gelek nunertî hatine vekirin, ev jî tê wateya ku di warê dîplomasiyê de em nêzikî hevûdû dibin. Ev nunertî destpêk in ji bo sîwana ku hatiye avakirin bi navê federaliya Rojava û Bakurê Sûriyê. Dê di warê dîplomasiyê de gav werin avêtin. Ew dixwazin di warê leşkerî de û di şer de alîkar bin ku DAIŞ were têkbirin. Lê bêyî van hêzan tu çareserî bi ser nakeve. Ji ber wê yekê civaka navdewletî wê di pêşerojê de di warê dîplomasiyê de jî piştgiriyê bide me."

### Fewziya Evdo: Em di xizmeta penaberan de ne

Hevseroka Meclîsa Zagonsaz Fewziya Evdo jî got wan amadekariyên penaber û koçberan kirine û wiha axivî: "Heta ku warên wan werin rizgarkirin, em di xizmeta wan de ne. Çi derfet û îmkan di destê me de bin em ê bo wan seferber bikin. Meclîsa Menbîcê ya Siyasî û Leşkerî heye. Ew xebatên xwe dimeşînin. Ew karê xwe birêve dibin. Dema HSD li wê derê be alîkariya wan dike. Di her warî de em piştgiriyê didinê û em bi hev re kar dikin. Pêşeroja de mimkûn e di nava federasyona Rojava de cih bigire, eger meclîsa wan bixwaze wê werin beşdar bibin. Lê niha meclîsa wan heye. Tifaqa me bi hevdu re heye. Em di nava kordînasyênê de ne."



### 'Herkese dixwaze bi me re bixebite'

Evdo ragihand ku di warê leşkerî de jî herkes dixwaze bi wan re hevkarî bike û wiha got: "Ji ber ku em li hemberî terorê şer dikin. Ji bona wê yekê jî dixwazin li kêleka me bisekinin. Em bi hêvî ne ku di vî warî de di demên pêş de ev hevkarî vegûhere hevkariyek stratejîk û siyasî jî û ne tenê di warê leşkerî de bimîne. Hatina hêzên biyanî bo Rojava girîng e. Lê ji bilî leşkerî divê gavên siyasî jî werin avêtin ji bo ku şer li vê herêmê nemîne û em bi hevre aramiyekê li ser vê xakê ava bikin."

### Osman Muslîm: Kurdan ji bo xwe wek leşker dibînin

Nunerê Encumena Niştimaniya Kurd li Sûriyê (ENKS) yê Tirkiyê Osman Muslîm jî derbarê geşedanên dawîn yên li herêmê û helwesta ENKS'ê ya li hember van geşedanan ragihand ku ew pir kêfxweş in ku DAIŞ ji herêmê tê paqijkirin û diyar kir ku di warê siyasî de kêmasî pir in û wiha axivî: "Em ENKS di aliyê siyasî de vê kêmasiyê dibînin. Xelkê me niha tê kuştin. Gelo armanc çi ye ji vê yekê? Kurdan bo xwe di qadê de weke leşker dibînin. Lê di aliyê siyasî de pêşkeftinek tune ye. Xortên me şehîd dibin. Em kêfxweş in ku DAIŞ li herêmê tê paşxistin û têkbirin. Lêbelê divê ev pêşketin bi xwe re pêşkeftineke siyasî jî bîne û herwiha divê ev geşedan bi xwe re tifaqeke kurdan jî bîne, lê mixabin hêj di navbera kurdan de ev tifaq pêk nehatiye."

Muslîm cîvîna Tirkiyê, Sûriyê, Îranê û Cezayîrê jî bibîr dixe û axaftina xwe wiha dewam dike: "Ev welat li ser meseleya kurdî digîjihin hev û hevdu dibînin. Ev di serpêhatiyan de jî heye, ne tiştekî nû ye. Şoreşa başûr ya 75'an di bîra me de ye. Dema ku pêşkeftinek çêbû ev dewlet qebûl nakin û razî nabin. Divê em jî li hember vê yekê siyaseta xwe bi gel re, di nava xwe de, di qada nadewletî û heta bi van welatan re xûrt bikin. Divê em nîşan bidin ku em ne metirsî û xeter in li ser wan. Dema mijar kurd be digihijin hevdû. Hinekî kêmasiya me jî heye, eger dema ku em nikarin di warê siyasî de pêş biçin û nikaribin xwe bidin nasîn, ev geşedan rû didin. Ji Efrînê heta sînorê Başûrê Kurdistanê ev xak di destê kurdan de ye û ev jî tirsê têxe dilê welatên cîran, ber ber vêç yekê jî naxwazin kurd serbikevin."

### 'Hezar kes hatin revandin'

Nûnerê ENKS'ê yê Tirkiyê li ser rewşa herêma Şehbayê jî dibêje: "Li herêma Babê kurd, ereb, tirkmen hene û gelek gund yên kurdan e û hejmara kurdan zêde ye. DAIŞ'ê nêzikî hezar kesî girtine, gelek kes kuştine. Xelk jî berê xwe dide çolê û ji herêmê direve. Rewş gelek xerab e. Divê li hember vê yekê tedbîr werin girtin ku em xelkê xwe ji vê rewşê rizgar bikin."

### 'Piştgiriya siyasî nîne'

Muslîm di dirêjiya gotara xwe de dibêje hêj jî welatên biyanî rêveberiya Rojava nas nekirine û baweriya xwe bi vê rêveberiyê ne anîne û wiha daxive: "Em pênehesiyan e ku carekê welatên biyanî baweriya xwe bi vê rêveberiyê aniye û nas kiriye ku bibêjin 'hûn miletek in û em ê alîkariya we bikin.' Mesele bo wan DAIŞ e. Me gelek nûnerên biyanî dîtine li vir têkiliyan bi PYD'ê re datînin, lê ev têkilî ji warê leşkerî derbas nabin. Em hêviyeke mezin di van de nabînin ku Kurdistanekê çêbikin. Tiştê ku tê gotin Sûriyeke demokratîk ku herkesek bigihîje heqên xwe, zêdetir tiştek negotine. Federasyona ku hatiye îlankirin, heta niha nehatiye naskirin. Rûsya ku dixwaze PYD beşdarê Cenevê be, ev federasyon nas nekiriye. Federasyona wan weke 'Federasyona Bakûrê Sûriyê' tê binavkirin. Tiştek bi navê kurdî tê de tune ye. Ev cihê nexweşiyê ye. Tu kesê ev federasyon nas nekiriye û tu encam dernexistiye holê."

### Tirkiye, DYA û kurd li Încîrlîkê civiyan

Li hêla din di derbarê Operasyona Menbîcê de, helwesta Tirkiyê û pevçûnên li Bakûrê Kurdistanê de rojnameya Libnanê Es Sefîr diyar kir ku beriya destpêkirina Operasyona Menbîcê, rayedarên Amerîka, Tirkiye û HSD'ê li baregeha Încîrlîkê hevdîtinek pêkanîne. Tê gotin ku biryara operasyonê dema ku bendava Tişrînê hat bidestxistin hatibû wergirtin, lêbelê ji ber pêşniyara Tirkiyê ya 'em ê DAIŞ'ê paqij bikin' hat rawestandin. Lêbelê piştî serdana Serfermandarê Hêzên Navendî yê Amerîkayê (CENTCOM) General Joseph Votel ku 21'ê Gulanê de pêk hat û rojek piştî wê jî çû Tirkiyê, hat ragihandin ku wext temam dibe û divê demildest operasyon destpê bike û piştî ku Tirkiye hat qanîkirin ku wê hêzên ereb operasyonê birêve bibin, rizgarkirina Menbîcê destpê kir. Di 18'ê Gulanê de jî Erdoğan û Obama jî di vê derbarê de hevdîtinek pêk anîbûn û Fermandarê CENTCOM'ê General Votel li ser vê yekê hatibû heremê.

Li gor agahiyan di vê civînê de li ser şerê di navbera PKK'ê û Artêşa Tirkiyê yê de jî niqaş hatine kirin û DYA'yê di vê civînê de Tirkiye qanî kiriye ku muzakere dîsa destpê bikin. Herwiha Tirkiyê jî li hember pêşveçûna hêzên kurd li herêma Şehbayê û ber bi Cerablûsê ve daxwaz kiriye ku PKK ji bajarên Bakur vekişe. Ji bilî vê yekê tê gotin ku Tirkiyê komên çekdar yên wek Nureddîn Zengî bo tehdîdê şandine herêma Mareyê û ku derbarê tevgera ber bi Efrînê de çavderiyê bikin.

### Îlham Ehmed: Em dixwazin bibin cîranekî baş yê Tirkiyê

Li aliyê din Hevseroka Meclîsa Sûriya Demokratîk (MSD) Îlham Ehmed ragihand ku wan bingeha Federasyona Rojava û Bakurê Sûriyeyê pêkanîne û ew dixwazin ji nûh ve diyalogê bi Enqerê re dêynin. Ehmed herwiha eşkere kir ku di destpêka qeyrana Sûriyê de dîyaloga wan bi Tirkiyê re hebû, lêbelê ji ber piştgiriya DAIŞ'ê diyaloga wan têkçûye. Hevseroka MSD'ê îddîa kir ku ewlehî û îstîqrara Sûriyê û Tirkiyê bi hev ve girêdayî ye û ew dixwazin bibin cîranekî baş yê Tirkiyê.





Li Rojavayê Kurdistanê liv û tevgera leşkerî û siyasî gurttir dibe. Operasyona Menbîcê ku serê vê mehê destpê kir, ber bi dawîbûnê ve tê. Hêzên HSD'ê û hevpeymana navnetewî derbasî nav bajêr bûn. Hêzên kurd niha amadekariya rizgarkirina bajarê Bab'ê dikin.





## Nivîskar Arif Qurbanî:

# Barzanî dikare qeyranê çareser bike

"Rêkeftinên di navbera partiyan de têkçûne. Parlemento ne aktîv e. Keşe û arîşe kurtir û aloztir dibin. Bi rola Kak Mesûd Barzanî mimkûn e ku qeyrana navxweyî çareser bibe û Parlemento aktîv bibe. Kak Mesûd dikare çareyekê ji vê aloziya re û meseleya Serokatiya Parlementoyê jî çareser bike."

M. Salih Bedirxan

Piştî şikestina xetera DAIŞ'ê tevî destêwerdanên Îranê bi rêya alozkirina siyaseta kurd û xetera Heşdî Şabî niha jî Tevgera Goran bi hewldanên tund rêgiriyê di ber serxwebûna Kurdistanê de dike û dixwaze dawiyê li proseya rapirsiyê bîne. Medyaya Tevgera Goranê bi belavkirina raportan di derbarê Serokê Herema Kurdistanê Mesûd Barzanî, hewl dide xelkê birjîne ser kuçe û kolanan û da êrîşî navendên asayîş û PDK'ê bikin.

Beramber vê helmeta Goranê Barzanî daxuyandib ku ew ê serxwebûna Kurdistanê û berzkirina xweragiriya Pêşmerge bersiv bidin kesên dijberî û nakokiyê di nava komelgeha kurd de saz dikin. Herwiha hat zanîn ku Amerîkayê jî hişyarî daye Tegera Goranê da ku dawiyê li dijayetiya Mesûd Barzanî berde û aloziyê kûrtir neke.

Rojnameger û nivîskarê kurd Arif Qurbanî li di derbarê qeyrana navxweyî û aloziya li Kurdistanê durist bûye ji BasNûçe'yê re axivî. Qurbanî bal kişand ser rola Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî û eşkere kir ku Barzanî dikare bir rola xwe rabe û qeyrana heyî çareser bike.

**Medyaya Tevgera Goranê niha gelekî tê nîqaşkirin. Gelo çima medyaya Goranê dest bi reşkirina Barzanî kir? Bi vê yekê çi hat armancakirin?**

Rikaberiyeke tûnd di navbera PDK'ê û Tevgera Goranê de pêk hatiye. Ev du sal in li Herêma Kurdistanê şerekî dijwar li dijî DAIŞ'ê heye. Medya ya Goranê weke ku dijberiya Kak Mesûd Barzanî kir dijayetiya DAIŞ'ê û ya xelîfê DAIŞ'ê Ebûbekir el Bexdadî nekir. Beramberî medya ya Goranê medya ya PDK'ê jî heman helwest wergirt. Dijayetiya medya ya PDK'ê ya li dijî Sekreterê Tevgera Goran Kak Newşîrwan Mistefa kir, li dijî DAIŞ'ê de nekir. Herdu partî bi hevdû ketine. Ev yek cihê dilgiranî û nerazîbûnê ye. Pirr heyf e. Di dîrokê kurd tu carî ji aliyê dijmin ve têk neçûne ji ber nakokiyên navxweyî şikestin xwarine. Ev yek dîsa li Kurdistanê pêk tê. Ev yek jî cihê mixabinî û nerazîbûnê ye. Rewşa aloz dibe û kêşe zêdetir dibin.

**Cenabê te di makaleyên xwe de amaje li ser wê yekê dike ku ji ber nakokiyên navxweyî metirsî li ser destkeftên Kurdistanê heye. Ev nakokî ber bi kuderê ve dihere? Ew ê çiqasî berdewam bike û ew ê encamên wê çi bin?**

Rast e, demeke dirêj e ez li ser vê meseleyê dinivîsim. Yek ji sedemên vê nakokiya navxweyî şerê DAIŞ'ê ye. Kurdistan ev du sal e bi şerê DAIŞ'ê re rû bi rû ye. Şer ber bi dawîbûnê ve dihere. Pêşmergeyên Kurdistanê karibûn ku DAIŞ'ê ji nav bibin û dawiyê li DAIŞ'ê bînin. Mesele piştî DAIŞ'ê destpê dike. Eger DAIŞ bi temamî ji nav çû û arîşeyên navxweyî nehatin çareserkirin ew ê siberoja me, dahatûya me ne dahatûyeke geş û zelal be. Ew ê alozî û rikeberiya aliyên siyasî kurtir bibe. Hêzên navdewletî, Hevpeymaniya Navdewletî ya ku li dijî DAIŞ'ê şer dike, Amerîka, welatên Ewropa, nîgeranên vê rewşa Kurdistanê ne. Aloziyeke giştî li Rojhilata Navîn peyda bûye, temeşe bikin Tirkiye, Iraq, Sûriye di kîjan qonaxan re derbas dibin. Tirkiye hêzeke mezin a endamê NATO'yê ye, dostê Amerîkayê ye, hevpeymanê Ewropayê ye lêbelê dema arîşeyên navxweyî rewşa Tirkiyê têk daye. Li Iraq û Sûriyê jî heman rewş heye. Xetere li ser Herêma Kurdistanê jî hene. Dewletên xwedî azmûnên salane tûşî girift û arîşeyan dibin. Eger ew jinav diçin mimkun e Kurdistan jî tûşî aloziyên mezin bibe.

**Nûnerên Goranê û YNK'ê eşkere dikirin ku ew ê rêkeftina wan qeyrana navxweyî çareser bike. Lêbelê wisa diyar e ku piştî wê rêkeftinê qeyran aloztir bû. Çi tesîra wê rêkeftinê li ser nakokiyan çêbû?**

PDK piştî rêkeftina Goran û YNK'ê nîgeran bû. Di navbera PDK'ê û YNK'ê de jî rêkeftin hene. Li ser şerê li dijî DAIŞ'ê, li ser îderaya herêmê, li ser pêkanîna hikûmetê çend rêkeftinên cuda di navbera PDK'ê û YNK'ê de hene. PDK neraziye ji rêkeftina Goran û YNK'ê. PDK di wê baweriyê de ye ku rêkeftina Goran û YNK'ê wê dubendiyê saz bike di navbera YNK'ê û PDK'ê de. PDK eşkere dike ku ew ne amadeya bi Goran û YNK'ê re bicive. PDK dixwaze cuda cuda bi partiyan re bicive. Naxwaze civîneke sêqolî birêve biçe. Ev helwesta baş nîne. Deriyê diyalogê divê her tim vekiribe. Eger alî li hev rûnên dikarin çareseriyekê ji meseleya serokatiya parlementoyê re bibînin û wê arîşeyê çareser bikin. Meseleya serokatiyê herêmê û aktîvkirina Parlementoyê jî dikarin bi riya diyalogê çareser bikin. Goran jî divê xwe ji diyalogê re amade bike. Bi dijayetiyê çareserî nayê dîtin.

**Li gor zanyariyên li ber destên me wê Tevgera Goran sê nameyan ji PDK'ê re bişîne û daxwaza danişînê bike. Ew name hatin şandin gelo?**

Na hîn ew name nehatine şandin. Goran wê daxwaza civîneke sêqolî li PDK'ê bike. Bi wan nameyan wê Goran ji PDK'ê daxwaz bike ku ew û PDK-YNK û Goran li hev rûnên û arîşeyan çareser bikin. Heta niha ew name nehatine şandin lêbelê wê ew name ji bo PDK'ê bên şandin. Ez di wê baweriyê de me ku wê PDK–YNK û Goran li hev rûnên. Rêkeftina Goran û PDK'ê bi dawî bûye. Divê dîsa lihev bikin û wê qeyranê çareser bikin. Divê her se alî li hev bikin çi li ser meseleya wezîran be çi li ser meseleya, Serokê Parlementoyê be çi jî li ser meseleya serokatiya herêmê be. Ez di wê baweriyê de me divê li ser rêkeftineke taze her sê alî lihev bikin. Goran xwe ji vê yekê re amade dike. Ya hewce û pêwîst jî ew e ku hemû alî lihev bikin û qeyranê çareser bikin. Xelkê Kurdistanê ji ber van nakokiyên hizbên siyasî bêzar bûye.

**Cenabê te ji mêj ve weke rojnamegerekî nêzîkî Mam Celal tê zanîn. Herwiha te şahidî li nakokî û rêkeftinên YNK'ê û PDK'ê jî kiriye. Ev nakokî ew ê çawa çareser bibe?**

Te bal kişand ser xaleke muhîm. Yek ji sedemên van arîşeyan û vê nakokiyê jî nexweşiya Mam Celal Talabanî bû. Mam Celal bi karîzmaya xwe bi siyaseta xwe dikarîbû nakokiyan rabigre û wan çareser bike. Eger Mam Celal li ser piyan bûya wê ev qeyran pêk nehata ez di wê baweriyê de me. Mam Celal di jiyana xwe ya siyasî de her tim xwedî biryarên pak ciddî bû. Mam Celal dikarîbû ku Newşîrwan Mistefa û Kak Mesûd Barzanî bigihanda hevdû. Ew û Kak Mesûd Barzabî herdem bihevre bûn ligel hevbûn. Kak Mesûd û Mam Celal li ser rewşa Kurdistanê xwedî biryarên aştiyane bûn. Niha Kak Mesûd dikare bi erka xwe rabe û vê qeyranê çareser bike.

**Gelek layanên siyasî dest bi dijayetiya Mesûd Barzanî kirine. Ew ê Barzanî çawa bi erka xwe rabe?**

Hemû layanên siyasî eşkere dikin ku Kak Mesûd dikare vê qeyranê çareser bike û bi erka xwe ve rabe. Dikare rêgiriyê di ber arîşeyan de bike da ku aloztir nebin. Kak Mesûd xwedî gotin e. Ew dikare ji bo çareseriya van qeyranan nexşerêyekê peyda bike û aliyan bigihîne hevdû. Bi destpêxşeriya Kak Mesûd Barzanî ev qonax mimkûne derbas bibe Kurdistan zirareke mezin nebîne. Amaje li ser wê yekê hene ku Amerîkayê jî hişyarî daye Goranê da ku dawî li wê helmeta medyayî bîne. Gelo Amerîka çima pêwîst dibîne û Goranê hişyar dike?

Tu zanyarî li ber destê min tunene ku Amerîkayê hişyarî dabe Goranê. Lê ji Amerîkayê wêdetir xelkê Kurdistanê hemû nerazîne ji helmeta PDK'ê û Goranê, karê herdu partiyan ne rast bû. Xelk aciz e û narehetbûye ji ber van nakokiyan, ji ber qeyrana darayî. Amerîka û hevpeymanên Kurdistanê naxwazin îstîkrara siyasî ya Kurdistanê têk biçe û Kurdistan tûşî nearamî û giriftên mezin bibe.



**Vê aloziya navxweyî çi tesîrê li ser Pêşmergeyên li bereyê şer dike? Daxwaza Pêşmergeyan ji siyasetmedara çi ye?**

Xweşbextane Pêşmergeyên Kurdistanê nebûne parçeyekî nakokiya navxweyî û di nava vê qeyrana aborî de, bêyî ku mûçe bistînin li bereyên şer sekînine û xaka Kurdistanê diparêzin. Qehramanane li hember DAIŞ'ê rawestiya ne. Bi serfermandariya Kak Mesûd Barzanî Pêşmerge şerê DAIŞ'ê dikin û nebûne aliyekî nakokiyan û arîşeyên navxweyî. Şerê DAIŞ'ê ber bi dawîbûnê ve dihere. Ev yek di encama serkeftinên Pêşmergeyan de pêk hatine. Pêşmergeyên Kurdistan niha tenê bi şerê DAIŞ'ê re mijûl dibe. Lêbelê ez di wê baweriyê de me ku Pêşmerge jî dixwazin dawî li aloziyên navxwe were û ew qeyran çareser bibe.

**Eger alozî wisa berdewam bike îhtîmala wê yekê heye ku şerê navxweyî şerê birakujiyê dubare bibe?**

Ez ne di wê baweriyê de me ku şerê navxwe durist bibe û dîsa ew şerê birakujiyê rû bide. Di baweriya min de, ew yek careke din di dîroka kurdan de rû nade. Hemû aliyên şerê birakujiyê kirine poşmaniya xwe anîne ziman û tu kes ji şerê birakujiyê îstîfade nake. Nakokî û aloziyên aliyan kûr bûne, gelek mesele hene divê bên çareserkirin. Şerê navxwe wan arîşeyan çareser nake. Ez di wê bawriyê de me. Eger demeke din jî ev nakokî wisa berdewam bikin û çareserî ji wan re neyê dîtin. Baştirin tişt du îdareyî ye. Ev yek ji şerê birakujiyê baştir e. Di şûna ku ew ê kurd hevûdû bikujin bila dev ji şîrîkatiyê berdin.

**Ez dixwazim bêm ser doza li ser Newşîrwan Mistefa. Goran û Newşîrwan Mistefa gelekî behsa dadwerî û mafê mirovan dikin. Çima li dijî biryarên dadgehê derdikevin û naçe îfadeyê nade?**

Ev yek jî arîşeyeke siyasî ye. Parçeyekî arîşeyên siyasî ye. Heta niha tu belge tunene li ser tawanbûna Kak Newşîrwan Mistefa. Eger PDK'ê kiribe, eger dozgerê Hewlêrê kiribe kê ev doz dabe vekirin xeletî kiriye. Piştî rêkeftina YNK û Goranê geşedanên diyalogên durist dibûn. Alî nêzîkî hevdû dibûn. Lê meseleyea dadgehê qeyran aloztir kir. Hewce nedikir ku ew mesele ewqas derkeve pêş. Hewcebû deriyê diyalogê bihata vekirin.

**Ev alozî û nakokî ew ê rê li ber refarandûmê û serxwebûnê bigrin gelo?**

Rêkeftinên di navbera partiyan de têkçûne. Parlemento ne aktîv e. Keşe û arîşe kurtir û aloztir dibin. Weke ku min li destpêkê got. Bi rola Kak Mesûd Barzanî mimkûn e ku qayrana navxweyî çareser bibe û Parlemento aktîv bibe. Kak Mesûd Barzanî dikare çareyekê ji vê aloziya re peyda bike û meseleya serokatiya parlementoyê jî çareser bike.

Rapirsî meseleyeke niştimanî ye. Meseleyeke muhîm e. Heta niha Lîjneya Hilbijartinan a Herêma Kurdistanê tu amadekarî nekirine. Parlemento girtiye. Ez di wê baweriyê de me, heta ku diyalogek û biryareke hevbeş a partiyên siyasî dernekeve ew ê rapirsî jî pêk neyê. Kak Mesûd Barzanî beriya hilbijartinên Amerîkayê dixwaze ew referandûm biencam bibe. Rapirsî karekî asan nîne. Rewşeke cuda heye li Kurdistanê. Bi hatina DAIŞ'ê re hinek herêmên nû ketin ser axa Kurdistanê. Meseleya Kerkûkê jî yek ji meseleyên girîng a Kurdistanê ye. Ew ê Kurdistan wan navçeyan dîsa bide Bexdayê gelo? Ew ê Pêşmerge ji wan navçeyên kurdan derkeve gelo? Ev hemû pirsên li ser rapisiyê ne. Heta layanên siyasî lihevdû nekin û negihên rêkeftinekê ez bawer nakim rapirsî bi encam bibe.

**Li aliyê din meseleya statûya Kerkûkê jî dîsa bûye xaleke germ. Gelo Waliyê Kerkûkê Necmeddîn Kerîm çima dijî biryarên aliyên siyasî û rêveberiya Kurdistanê biryaran distîne?**

Bi hatina DAIŞ'ê re diyar bû ew ê Kerkûk bibe xaleke gewre di nava meselayan de. Piştî DAIŞ'ê êrîşî Kerkûkê kir Pêşmergeyan parastina Kerkûkê kirin. Artêşa Iraqê ji Kerkûkê derket. Berê jî hinek herêmên Kerkûkê di bin kontrola Pêşmergeyan de bûn. Beriya DAIŞ'ê tu kesî bawer nedikir ku Pêşmerge kontrola Kerkûkê bikin û kurd li ser çarenûsa Kerkûkê ewqasî bihêz bibin. Hatina DAIŞ'ê ji bo kurdan bû bûyereke nû, bi taybetî li ser Kerkûkê tiştekî nû derket holê. Pêşmergeyan yekser dest bi parastian bîrên neftê kirin. Herwiha li dijî DAIŞ'ê dest bi parastina xelkê Kerkûkê kirin.

Axaftinên Waliyê Kerkûkê Necmeddîn Kerîm tu tesîr û bandorê li ser siberoja Kurdistanê nake. Lewre pêkhateyên Kerkûkê hemû dixwazin bi ser Kurdistanê ve bin. Kurd ji xwe dixwazin. Partiyên siyasî yên Kurdistanê jî li ser vê yekê xwedî biryar in. Niha bi hatina Pêşmergeyan xelkê Kerkûkê xweşhaliya xwe tîne ziman. Ew jî dixwazin ku bi ser Kurdistanê ve bin. Kerkûk niha bajarê herî aram ê Kurdistanê ye. Sunneyên ereb, sunneyên tirkmen, şîeyên ereb, şîeyên tirkmen hemû dilxweş in û bi kêfxweşî li kolanên xwe li taxên xwe bi rihetî tevdigerin. Kerkûk cihekî hesas e. Dema li Bexdayê şîe dibin desthilatdar sunneyan qetildikin. Herwiha dem ali Bexdayê sunne dibin desthilatdar ew jî şîeyan qetil dikin. Bi hatina Pêşmergeyan ew arîşe li Kerkûkê çênebe. Hemû kes dizane eger bi ser Kurdistanê ve bin bêyî beşdarî nakokiyên mezhebî dikarin pêkve bijîn.

# ZİMANGEH


Abdullah Kıran

Çû ber dilovaniya xwe: Vê gotina ku piştî mirina kesekî tê bikaranîn şaş ketiye zimanê me. Ev biwêj ji zarava me yê soranî tê; bi soranî rast e, belê bi kurmancî çênabe. Di soranî de "Xwe" ji bo peyva Xwedê tê bikaranîn. Îcar di kurmancî de "xwe" cînav e; ne bi wateya Xwedê ye. Loma rastiya vê gotinê weha ye: Çû ber dilovaniya Xwedê. Mesala bi soranî dibêjin: Bi navê Xwe yê dilovan û mîhrîban. Ev gotin jî bi kurmancî weha ye: Bi navê Xwedê yê dilovan û mîhrîban.

Navbend: Unvan (Îng. title): 1) Bernavê ku kar an rewşa civakî ya kesekî nîşan dide. 2) Navê ku ji bo malbat an jî cihê karekî tê dayin.

Mînak:
Nav: Azad
Navbend: Dr.
Paşnav: Cindiyanî

Mînak:
Nav: Şêrgo
Nabend: Prof. Dr.
Paşnav: Amedî

Mînak: Ma gelo navbenda şîrketa we çi ye? Ew lîmîdet şîrket e.

Gog: Top (Îng. Ball): Tişt an cîsmê gilover ê ku di leyistikên sporê tê bikaranîn. Gog li gor armanca xebitandinî dikare biçûk an mezin be.

Mînak:
"Herê gurriyo lawo,
Lo lo, lo lo dile min li bê ye.
Em naçine kêf û dawetê ye
Em Naçine şer û şerê qayîtalê ye
Bi qewta Xwedê heta saetekê ye
Emê bi serê te bileyizin bi gogê ye."

Bnr: Destanên Kurdî, Çîroka Siyabend û Xecê, Berhevoka Prof. Dr. Celîlê Celîl û Prof. Dr. Ordîxanê Celîl, Weş. Zel., r.60

Serxwebûn: Bağımsızlık (Independence)
1- Rewşa bi sere xwe bûnê, îstiklal.
2- Rewşa ku rûdana bûyerekê, ji rûdana bûyerên din cihê û bi serê xwe ye.
3- Rewşa ku dewletek di karen xwe yên derve û navxweyî (hundirîn) de bi sere xwe ye.

Serxwebûnxwaz: Bağımsızlıkçı: Kesê ku alîgirê dewleteke serbixwe ye, bi otonomî, ango serxwetiyê ne razî ye.

Serbixwe: Bağımsız (Sovereing):
1- Beyî ku di bin bandora kes an tiştekî de bimîne, bi sere xwe biryar dayin.
2- Rewşa ku mebûsek di meclîsê de girêdayî tu partiyekê nîne.

Serxwe: Özerk (Autonomous):
1- Rewşa ku dewlet an avahiyek bi rêbazek cihê ve girêdayî ye û dikare karên xwe rêve bibe.
2- Rewşa li gor hin mercan bi serê xwe biryar dayin.

Serxwetî: Özerklik (Autonomy)
1- Rewşa ku civat an avahiyek li gor rêbazên ku bi xwe danîye, bi azadî û serbestî karên xwe rêve dibe; muxtariyet, otonomî.
2- Rewşa ku kes an civatek rêbazên xwe bi xwe datîne.

Xweser: Özgün (Authentic):
1- Tiştê ku wekî xwe ye, taybetên wî hene û ne kopya ye, orjînal.
2- Tiştekî ku cara pêşî hatiye çêkirin, ne bergirtî (teqlît) ye.

Gellek mixabin van salên dawî peyva "xweser" bi şaşî di cihê gotina "otonomiye" de tê xebatindin, ku ne rast e. Wek me li jorê jî kifş kir otonomi "serxwetî" ye. Ji xwe "serxwe," "serxwetî" û "serxwebûn" hemû jî ji rehekê, ango ji qirn û kokekê tên.

Dîsa yek gotineke ku bi şaşî ketiye zimanê me jî "derbasî be" an jî "derbasbûyî be" ye. Ev peyv di şûna "geçmiş olsun" a tirkî de tê xebitandin, belê ne rast e. Rastiya vê gotinê weha ye: Serborî be! Gava ku nasekî mirov dimire, mirov ji bo "sersaxîyê" an jî "serxweşiyê" diçe seredana wî. Nexwe gava ku "mirin" hebe, "sersaxî," "serxweşî," belê gava ku nexweşîn an qezayek hebe, hingê peyva me "serborî" ye.

Wê gavê "derbasî be" şaş e; "serborî be" rast e.

Mînak: Hecî Husên do miriye, emê îro herin sersaxiyê, ma hûn jî bi me re nayên?

Mînak: Berfîn cardin nexweş ketiye, emê herin serboriya wê.

Mînak: Ma we sersaxî dabû mala Hecî Husên? Na xêr, me ji bîr kiriye.

Mînak: Ma serborî dabû Berfînê? Erê erê.



# Pevçûnan barkirin çûn çiya!



Hêmin Dildar

Şer û pevçûnên di navbera PKK'ê û dewletê yên li navçeyan bi hatina havînê re derbasî nava çiyan bû. Zêdetir ji salekê ye li navçeyên Bakur di navbera Yekîneyên Parastina Sivîl (YPS) û hêzên dewletê de şer û pevçûnên dijwar pêk tên. Li gor daneyên saziyên mafê mirovan û rêxistinên medenî heta niha ji herdû aliyan bi hezaran kesî di encama vî şerî de bûne qûrbanî û bi sedan kesên medenî jî birîndar jiyana xwe ji dest dane an jî brîndar bûne.

Bi rêzê, li navçeyên Farqîn, Cizîr, Sûr, Dêrik, Nisêbîn, Silopya, Hezex, Licê, Gever û Şirnexê qedexeya derketina derve hat ragihandin û ew qedexe bi mehan berdewam kir. Bi ragihandina qedexeya derva ya li bajaran xelqê sivîl malên xwe terk kirin û bûn penaber. Qedexeya derketina derve ya ku di meha adarê de li navçeya Nisêbîna Mêrdînê û Şirnexê hatibû ragihandin hîn jî berdewam dike. Tê zanîn ku gelek şêniyên Şirnexê bajarên herêmê koçberbûne. Herwiha hejmarake zêde ya şêniyên bajarên Şirnexê jî li qûntarên Cûdiyê di konan de, bi cih bûne. Xelkê Nisêbînê jî li navçeyên Mêrdînê bi cihbûne û malê taxên xwe bi cih hiştine.

Ligel operasyon, şer û pevçûnên li bajaran geşedan tevgerên leşkeri di rojên dawîn de derbasî çiya û daristanan jî bûn. Artêşa Tirkiyê ji bo destgîrkirina şervan û gerîllayên PKK'ê li sêgoşeya, Licê, Mûş û Çewlîgê operasyoneke berfireh daye destpêkirin û bi 100 hezar leşker beşdariyê di vê operasyonê de dike. Walîtiya Amedê din ava hefteyê de zêdetir li 40 gundên Licê qedexeya derketina derve ragihand û eşkere kir ku operasyoneke mezin li herêmê Licê destpêkiriye. Ji bilî Licê li, Çiyayê Cûdî jî operasyoneke befireh a leşkerî destpêkiriye û bi hezaran leşker beşdarî operasyonê dibin. Çavkaniyên herêmî eşkere dikin ku di encama operasyonan de agir bi daristanên li Licê û Cûdî ketine û bi hezaran donum daristan hatine şewitandin. Herwiha 75 rêvebirên HDP'ê yên Amedê ji bo mudaxaleya agirê li daristanên li Licê şûnê bajar û hêzên emniyete rê li ber wan girtine û ew destgîr kirine.

Parlementerê Parlamenterê HDP'ê yê Şirnexê Ferhat Encü, Serokê Komeleya Mafê Mirovan Öztürk Türkdoğan û ji Baroya Amedê parêzar Kezban Yılmaz a çavderiya rûdanên li herêmê dike ji BasNûçe'yê re axivin û operasyonên dawî yên leşkerî şîrove kirin.

Parlementerê HDP'ê yê Şirnexê Ferhat Encü: Cûdî tê bordûmankirin

Parlementerê HDP'ê yê Şirnexê Ferhat Encü, aşkere kir ku dewletê amadekariyên mezin ji bo operasyonên leşkerî kirine û niha Çiyayê Cûdî tê bordûmankirin. Herwiha Encü, da zanîn ku navçeyên Şirnexê hatine mîlîtarîzekirin û wiha berdewam kir: "Ji bo operasyonên mezin amedakarî hatine kirin. Li gor agahiyên ketine destên me, Çiyayê Cûdî ji aliyê balafirên şer ve tê bombebaran kirin. Riyên gundan hatine qûtkirin. Niha di wî alî de arîşeyên mezin hene. Niha gelê herêma Şinexê ji Qilabanê, heta Cizîr û Silopiyê liv û tevgerek leşekerî ya zêde heye.  Li gundewarên Bêşebabê jî operasyonên leşkerî hatine destpêkirin." Encü got daristanên Çiyayê Cûdî jî agir girtine.

Parêzer Kezban Yılmaz: Rêvebirên HDP – DBP'ê li Licê di baregehê de girtî ne

Parêzara Baroya Amedê Kezban Yılmaz a ku ev çend roj in çavdêriya rûdanên li Licê dike jî ji BasNûçe'yê re got li heremê 70 rêvebirên DBP – HDP'ê yên Amedê li navçeya Licê hatine destgîrkirin. Yılmaz eşkere kir ku dozgeriyê biryara binçaavkirina wan daye û ew ê ji bo dadgehê bên veguhestin. Herwiha Yılmaz da zanin ku ew ji bo alîkariya xelkê medenî çûbûn navçeyê û bi hinceta alîkariya rêxsitinê ew hatine girtin. Yılmaz wiha berdewam kir: "Em çûne qereqolê ji bo dîtina muwekkîlan. Wê wan bînin Diyarbekirê li fermandariya giştî. Ji ber ku hejmara wan zêde ye wê rojekê du rojan îfadeyan wan dirêj bike. Wê 74 kesan jî wek aligirên rêxistinê tuhmetbar bikin. Van kirinan wek piştenaviya rêxistinê dibînin."

Rewş ji ya salên 90'î xirabtir bûye

Parêzer Yılmaz, anî ziman ku dema ew çûne Liceyê û wan dere tanqên obûsan bibistiye û gundewarên navçeyê hatine bordûman kirin. Yılmaz çavdêriyên xwe yên ji navçeyê bi van gotinan bi me re par vekir: "Ev rewş ji ya salên 90'î jî  derbas bûye. Êvarî em çûn cem cendirme saet 01.30'î şevê bû, nehiştin em biçin wan deran, ne hiştin em biçin muwekkîlên xwe bibînîn em dane sekinandin, di gotin serbaz ferman ji me re şandiye em nikarin we berdin. Em bi zorê derxistîn. Yekser li ser te digerin. Nehiştin em karê xwe bikin. "

Serokê İHD'ê Öztürk Türkdoğan: Polîtîkayên berê tên dubarekirin

Serokê İHD'ê Öztürk Türkdoğan jî eşkere kir ku ji ber rewşa aloz a şer teşkîlatên wan nikarin kar li herêmê bikin û zanyariyan werbigrin. Herwiha Türkdoğan, eşkere kir ku hikûmetê biryar daye ku bi operasyonên leşkerî arîşeya Kurdistanê çareser bike û ji ber vê çendê operasyonên berfireh pêk tîne. Türkdoğan, bal kişand ser daxuyaniyên fermandarên berê yê Tirkiyê û wiha got: "Ev kiryar niha tên dûbarekirin. Serfermandarên Artêşa Tirkiyê bi dehan caran daxuyanî dan û gotin, 'me PKK têkbiriye, lêbelê arîşe bi çekan çareser nabe û divê teqez siyaset bikeve dewrê û bi riyên siyasî were çareserkirin' Tirkiye heman tiştan dûbare dijî. Çiqas operasyonan bikin û serkeftina bidest bixin jî li holê pirsa kurdî heye, dema ev arîşe nehat çareserkirin tundî wê mixabin berdewam bike. Hikûmet niha bi polîtîkayên emnî nêzî meseleyê dibe. Ev gotinên hikûmetê yên 'vê carê em ê biqedînin' bi dehan caran hatine bikaranîn ji aliyê hemû hikûmetan. Serfermandarên leşkerî jî ev yek anîn ziman. Heman şaşî tên dûbarekirin. Gelek windahî çêbûn, dibû ku ev çênebûna û Tirkiyê dikarî bi berdewamkirina proseya aştiyê çareseriyekê bibîne. Poltîkaya berê tê dûbarekirin."

## Destpêke xebata nû li Rojhilat



Xalid Xayatî

Bîreweriyek li ser giyanbexşên niştamanî kurd û çend gotin ji bo hizb, rêkixraw, rewşenbîr û kesayetiyên medenî û siyasetmederên Rojhilatê Kurdistanê.

Di destpêkê de sere xwe ji 6 hêja û qedirbilindên welatê xwe yên ku canê xwe ji bo niştiman kirine qurbanî datînim. Xweziya dest û pênûseke şaîran bûma û bi rêgaya çend peyvan araste, bi gulên rengîn bi bilindbûna qevdek gulên sosinî û hêroyî, hemxemî û hemderdiya xwe pêşkêşî dayik û bav, hevser û mindal, xuşk û bira û hevxebat û dost û havrêyan wê pola qahreman bikara ku tenê ji bo xelk û welatê xwe giyanê xwe bexş kirine.

Li gor nerîna min sûcdar bi tenê rejima dagirker a Îranê ye û ne kesekî din e. Di vê dema xembar û hestiyar de ez îcazeyê dixwazim û ez ê çend gotinan ji bo serkirdeyên hîzb û rêkixrawan, kesayetiyên siyasî û medenî yê Rojhelatê Kurdistanê û bi taybet ji bo mekteba siyasî û Komîteya Navendî ya Hizba Demokrata Kurdistana Îranê bikim Çend baldariyên min ê dostane hene, hêvîdar im  li ser bîreweriya xwe ya kurdî bigrin. Eger negrin jî her dost û hevalên min in û ji bo min herdem ew cihê rêz û îhtîramê ne.

Yekem, bila şehîda van giyanbexşan bikin destpêkek xebata nû ya siyasî li Rojhilatê Kurdistanê, herwiha bila bikin sembola karên nû yên xebatê. Bi wateyeke din bila vê xweragiriya bikin çerxaneke nû ya mejûyî.

Duyem, perspektîf, xwendin û bîreweriyeke cuda ya siyasî ji vê çerxana nû re pêwîst e. Beriya hemû tiştî, beriya xebata siyasî li Rojhilatê Kurdistanê divê armanc û şêwaza xebatê bê pênasekirin. Ev kar jî bêguman bi karekî berfireh ê gotarsaziyê, bicihkirina kultureke siyasî mimkun e.

Sêyem, ji bo van mebestan jî bêguman pêwîstiya me be hinek destpêşxerî û cesaret û lêkdanê heye ta ku li pêşiya hemû tiştî, bikaribin hewayeke dostane û dilsozane ava bikin. Da ku derfeta alîkariyê û beşdariya li wê proseyê durist bibe.

Çarem, di vê qonaxê de pêdawîstî bi hevkarî û nêzîkbûneke cidî ya siyasî û gotarî, hem di asta rêkxirawên medenî heye. Li nav kesayetiyên serbixwe jî ev yek derdikeve pêş. Gelo hizbên me yek digrin yan pêk ve dostane û bi hevkarî bernameyên cur be cur û niştimanî dibin pêş? Herweha pirsyar li ser vê yekê jî heye. Balansa xebat û çalakiyên li nav xebatkarên derveyî welat û nav welat çawa dursit dibe û wê dû cemser wê çawa le yek nêzîk bibin?

Ev komek pirs in. Bersiva van pirsan pêdawîstiyeke mejûyî ye.

Pêncem, di qonaxa destnîşankirina stratejî û taktîkeka xebata siyasî li Rojhilatê Kurdistanê pêwîst e analîz û hûrbûneke cidî li ser rejima îslamî ya Îranê bê kirin, aliyên wê yên bêhez û lawaz bên destnîşankirin. Li vir komek pirsiyar hene û xwe derdixin pêş. Gelo pêwîstî bi xebata çekdarî hebe, ew ê bi çi şêwazê û li ser çi platformê û biçe û ew ê çi kêmasiyên wê hebin û çi destkeftiyên wê pêk werin? Gelo, ew hêza tevgera siyasî ya Rojhilat heye ku bajarên Rojhilatê Kurdistanê bike meydana şer û serhildana civakê? Gelo kurd dikarin bi armanca alîkariya hêzên xwe, xebatên lobî û dîplomatîk û mafê mirovan, konferansan, semîneran li dar bixin û dewletan agahdar bikin?

Dost û hevrêyên berêz li asta serkirdeyatiya hizb rêxistinên kurdî herwiha çalakvanên rêzdar, hûn we di derbarê xebatên medenî û cur be cur de beriya min li bersiva van pirsan geriya ne û bersivên guncaw peydakirine. Ez di wê baweriyê de me û ez wisa dibêjim ku kar û xebata me ya pêkve baştirin rêye ji bo berdewamiya giyanbexşiya di ber welatê me de.





# Komele û PDKİ hevpeymanî lidarxistin

Li Rojhilat li gel destpêka şer, rejima Îranê li dijî hêzên kurdî gelek tedbîran digire û siyaseteke tund dimeşîne. Piştî vegera Peşmerge, rejimê nezî 100 hezar leşker şandin nav bajêr û çiyayên Kurdistanê. Çavdêrên siyasî dibêjin, li Rojhilat qonaxa nû destpêkir û kurdên vî beşî êdî wê li beramberî çewisandin û siyaseta tund ya Tahranê bê deng nemînin. Nûnerên PDKÎ bang li xelkê Bakûr dikin ku wan tenê nehêlin.

Kerem Arî

Geşedan û tevgerên siyasî û leşkerî yên Rojhilata Navîn di heman demî de li seranserê Kurdistanê jî tesîra xwe nîşan da û li Rojhilata bêdeng jî dengê çekan bilind bû. Di Newroza 2016'an Partiya Demokrata Kurdistan a Îranê (PDKÎ) biryar da ku xebata çiya û bajêr bigihîne hev û çalakiyên xwe zêde bike. PDK-İ sala borî ji Kîrmanşa heta Salmasê komên Pêşmerge bi cîh kiri bûn. Di encam de Pêşmerge vegeriyan Rojhilat Kurdistanê û şerê ku di kemînê de bû teqiya. Artêşa Îranê li bajarê Şino êrîşî Pêşmerge kir û pevçûnên pêşîn destpêkirin. Di encama şerên nav aliyan de 6 Pêşmergeyên PDKÎ'yê û nêzîkî 40 leşkerên Îranê jiyana xwe jidest dan. Herwiha ew pevçûn derbasî bajarên din ê Rojhilatê Kurdistanê jî bûn. Li gor çavkaniyên PDKÎ'yê li Pîranşar û Mahabadê jî Pêşmergeyan êrişê bargehên leşkerî yên Îranê kirin û hejmareke zêde Pasdaran kuştin. Piştî biryara PDKÎ, Komeleya Şoreşgerên Zehmetkêşên Kurdistanê (Komele) jî gihîşt biryara xebata Peşmerge û hêzên xwe bi PDKÎ re gihand hev. Çav li rê ye ku hevpeymana nav herdû partiyên kurd firehtir bibe û partiyên din jî tevlî vê hevkariyê bibin.

Nûnerê Hewlêrê yê PDKÎ'yê Mihemed Salih Qedrî û Endamê Polîtburoya PDKÎ'yê Rostem Cîhangirî rewşa dawî ya Rojhilatê Kurdistanê ji BasNûçe'yê re nirxandin.

### Nûnerê PDK-İ Qedrî: Qonaxa nû destpê kir

Nûnêrê PDKÎ'yê li Hewlêrê Mihemed Salih Qadirî derbarê şerê navbera Pêşmerge û hêzên rejîma Îranê de ragihand ku ew neçar mane ku berevaniya çekdarî bikin lewra tu derfet bo xebatên siyasî nemane. Qadirî wiha got: "Piştî raperîna Başûr hezên Rojhilat bi taybetî Partiya Demokrata Kurdistan a Îranê ku xwedî hêzeke mezin, xwedî cemawerekî herî pertew li Rojhilat û hizbekî pêkhatî, xwedî heftê sal dîrok, xwedî Komara Kurdistan, xwedî Qazî Mihemed, Dr. Qasimlo, Dr. Şerefkendî û bi hizaran şehîdan e, dest ji şerê çekdardî berdabû. Piştî biryara vegera welat û gihandina xebata çiya û bajaran hefteya borî me 6 şehîd dan. Ew şehîdên hemû gelê kurd in. Li dijî rejîma Îranê canê xwe feda kirin û bûne pêşengên destpêka xebateke nû, zindîkirina dîrokekî li dijî dagîrkeran."

### 'Îran li çar parçeyan dijî kurdan e'

Nûnerê PDKÎ'yê yê Hewlêrê vegera Pêşmerge ya nav bajêran li hember rejîma Îranê wekî bersîvek bilêv dike û destnîşan dike ku ew ê êdî Pêşmerge bêhtir di nav gel de xuya bike û wiha dibêje: "Mebestek ew e ku gelê me li hember destdirêjiya zilma rejîma Îranê xwe tenê nebîne, ya din jî ew e em peyamekê bidin rejîmê ku ji vir û pêve em di milê gele xwe de ne, ji bo daxwaz û mafên xwe yên netewî û bi îrade lî meydanê emê li dij wan rawestin. Çûna Pêşmerge bo rêxistina gel e. Çûna Pêşmergeyên me ne ji bo ragehandina qerara şer, belkû tevlîbûna gel bû ku em bikarin xebata çiya û bajaran li hev girêbidin. Rejîm bi qalibekî medenî rê nade, lê em zextekê çêkin li ser rejîmê, eger êrîş jî bike emê bikevin tevgera berevaniyê. Li ser vê esasê em dibînîn ev hereketa niha ku li Rojhilat dest pêkirî, her roj êrîşa lê dikin, telafatan dike, êrîş dike li ser Pêşmergeyan. Ez bawer im ev tevger roj bi roj wê berfirehtir be û rejîma Îranê jî bi hemî planên xwe ve li dijî gelê kurd be. İran çi li Rojhilat, çi li parçeyên din ên Kurdistanê bi hemû hêza xwe li dijî kurd disekine û nahêle gelê kurd bigihîje mafên xwe."

### 'PDK-İ û Komele hevpeymaneke çekdarî kirin'

Qedrî radigihîne ku di navbera PDKÎ û Komeleya Zehmetkêşên Kurdistana Îranê (Komele) de jî hevpeymaneke çekdarî hatiye kirin û ev yek nîşana yekdengiya partiyên Rojhilat e û wiha pê de diçe: "Me tevgerekî mezin daniye û dixwazin hemû partiyên Rojhilat tevlêbin. Eger em nikaribin di çarçoveya platformekî hevbeş û siyasî de îro li hev nêzîk bibin, ev parçebûn wê behtir çêbibe. Li dijî rejîma Îranê divê hemahengî hebe. Li ser vê esasê em û Komeleya Şoreşgerên Zehmetkêşên Kurdistanê hevpeyman in. Me û wan bi hev re çalakiyên çekdarî jî li dar xistin."

### "Xelk bi hatina Pêşmerge kêfxweş e"

Herwiha Qadirî anî ziman ku xelkê bi Rojhilatê çûna Pêşmerge gelek kêfxweş bûne û wiha got: "Piştî bîst û çend salan cara yekem xelk Pêşmerge dibîne. Pêşmergeyê PDK'Î bi bal wan ve diçe ku ew remza azadi û fedakariyê ne. Wextê ku Pêşmerge di nav xwe de dibînin moral û hêviyek li millet peyda dibe li hemberî dijmin. Pêşmerge himbêz dikin, alîkariyê dikin. Jî bo ku dizanin xebata Pêşmerge ji bo serweriya gel e. Ji bo wê em gelek dilxweş in ku gel Pêşmerge bi germ pêşwazî dike. Lewma Îran a dijmin ketiye tirsekî mezin bi hemû kirinên xwe, bi weşan, bi televizyon, bi radyoyên xwe dixwaze Pêşmerge li pêş çavên xelkê reş bike, xelkê ditirsîne ku Pêşmerge re alîkarî neke. Gelekî kesan digire û davêje zindanan."

### Rustem Cîhangîrî: Pêşmerge berevaniyê dike

Endamê Komîteya Mekteba Siyasî ya PDKÎ'yê Rostem Cîhangirî jî li ser pevçûnên di navbera rejîma Îranê û hêzên kurdî û proseya yekgirtina hizbên kurdî ji BasNûçe'yê re eşkere dike ku rejîm bi hêzeke mezin, topxaneyeke giran sînor, gund û bajaran digire û dixwazin xelkê çavtirsî bike: "Biryara me ew e ku em êrîşî ser bargehan û waran nakin. Em ji bo rêxistana gel ji bo ronkirina gel vedigerin bajaran. Par jî me ev biryare dabû lê îsal me zêdetir Pêşmerge şandin. Pêşmerge diçin seredanan dikin, li malan digerin û ve yêke her sal wê zêde bibe. Ev e bîst sal bêhtir e em li Başûr bi cîh bûne û tu sal nîne Pêşmerge seredana gelê kurd neke. Par jî me ji Kîrmanşa heta Salmasê wek tîmên biçûk Pêşmergê bi cih kiribû. Lê îsal me ev mezintir kir. Îsal dema çûnê artêşa Îranê êrîş kir û Pêşmerge jî berevaniya xwe kir. Em neçûn ji bo şer. Ew cihê ku şer qewimî 3-4 kîlometreyan dûrî bajêr e. Em dikarîn bêjîn ketine nav bajaran jî."

### 'Bila kurdên me çekên Îranê berdin'

Cîhangirî diyar dike ku di navbera partiyên kurdî de hevdîtin û danûstandin hene û pêşbînî dike ku wê ev hevgirtin zêde bibe û wiha berdewam dike: "Nîşana wê yekê heye ku hem Îran bi tundtir ser me de were û hem jî em partiyên kurdî bibin yekdeng." Cîhangirî pêwîstiya tifaqa hizbên kurdî li Rojhilatê Kurdistanê jî wek neçarî û zarûrî dibîne û wiha pê de diçe: "Piştî şehîdkirina Dr. Qasimlo heta îro jî me tu hevdîtin bi Îranê re nekirine. Çi awayî baweriya demokrasiye, ya mafên mirovan a edaletê ligel rejima Îranê nîne. Piştî banga Sekreterê Giştî yê PDKÎ Mistefa Hîcrî hin Pasdarên kurd çek berdan û wê ev yek dewam jî bike. Heyf û mixabin çend çekdarên kurd jî di nav refên Pasdarên Îranê de hatin kuştin. Em bi vê yekê gelek xemgîn in. Belê gava şer rûda di nava du hêzan de, mecbûr mirov berevaniya xwe bike. Siyaseta Îranê ew e ku kurê kurd bi destê kurê kurdekî din bide kuştin û hez dike ku vê çendê sistematîk bike. Em xwe ji vê dûr dixin. Ji sala 1979'an heta niha me biryar daye û em xwe ji kuştina Pasdar û cehşên kurd dûr dixin. Dijminê me tenê rejîma Îranê ye. Em lawayan dikin ku kurd xwe nedin nav refên Îranê. Em kurd hemû birayên hevûdû ne û hez nakîn lawên kurd bêne kuştin. Bila çekan berdin biçin malen xwe, li ber serê zarokên xwe bisekinin. Bila nebin kujerên birayên xwe."

### 'Divê xelkê Bakur me tenê nahêle'

Rustem Cîhangirî bang li xelk Bakûr jî dike û wiha dibêje: "Rojhilat pîştevaniya her çar parçeyan dike. Daxwaz û gaziya me ji xelkê Bakurê Kurdistanê ew e ku bi hemû hizr û baweriyên xwe, çi îslamî, çi komînîst, çi demokrat be bila piştgiriya me bikin, xelkê Rojhilat li meydana şer tenê nehêlin. Ev piştevanî çi siyasî, çi dîplomatîk, çi maddî, çi manewî û çi aliyê ragihandinê be, her tiştek di destê wan tê texsîr nekin. Em wek Pêşmergeyê PDKÎ'yê destê dostaniyê dirêjî hemî kurd û Kurdistanê dikin, bi taybetî jî Bakurê Kurdistanê. Me jî bawerî û hêvî heye ku xelkê Bakur me tenê nahêle."

# Piştî mebûsan niha şaredarî jî di bin gefê de ne

Murat Özdemir



Bi têkçûna proseya aştiyê îsal bi operasyonên leşkerî hevwext rakirina parêzbendiya parlamenterên HDP'ê jî ket rojevê. Piştî gûftûgo û niqaşên dûv û dirêj, pêşnûmeya ku parêzbendiya parlamenteran radike, bi hevkariya her sê partiyan (AKP, CHP, MHP) ji meclîsa Tirkiyê derbas bû û ji aliyê Serokkomarê Tirkiyê Recep Tayyip Erdoğan ve hat pesendkirin û bi vî awayî parêzbendiya gelek parlamenterên Partiya Demokratîk a Gelan (HDP) hatin rakirin. Herwiha di vê çarçoveyê de hefteya borî parlamenterên HDP'ê ji bo îfadedayînê daxwazî dadgehê hatin kirin. Lêbelê HDP radigihîne ku ew naçin û îfade nadin. Ev proseya ku bi rakirina parêzbendiyan destpê kir, niha jî bi mijara tayînkirina qayûman bo şaredariyên kurdan didome.

Partiya Herêmên Demokratîk (DBP) ku 2 sal berê li şûna Partiya Aştî û Demokrasiyê (BDP) hate damezrandin, niha di ser 100'an de şaredariyan di destê xwe de digire û van bajaran birêve dibe. Bi destpêkirina şer li dehan bajaran rêveberên şaredariyan hatin girtin, Hevserokê DBP'ê Kamuran Yüksek tevî 21 şaredaran hat girtin, 30 şaredar ji peywîrê hatin dûrxistin û herî dawîn rêveberê partiyê yê Şirnexê Hurşit Külter hat windakirin û aqûbeta wî ne diyar e.

Ji bilî wê yekê niha jî mijara tayînkirina qayûman bo van şaredariyan di rojevê de ye û rayedarên hikûmetê vê yekê bi awayekî rijd bi lêv dikin û li ser pêşnûmeyekê amadekarî tên kirin û hikûmeta Tirkiyê şaredariyên DBP'ê bi piştgirîkirina PKK'ê û şandina budçeya şaredariyan bo PKK'ê tawanbar dike. Lêbelê şaredariyên DBP'ê van tawanan red dikin û radigihînin ku ew tevî hemû astengî û kêmasiyan kar û xebatên xwe dimeşînin. Herwiha li ser budceya tê şandin jî dibêjin ku ew perê ku tê destê şaredariyan têrî dayîna muçeyên xebatkarên şaredariyê nake, lê ew tevî vê yekê jî projeyên xwe birêve dibin. Her wiha herî dawîn di hesabekî ser medya civakî ku nêzikî desthilata Tirkiyê ye, navên bajarên ku wê qayûm were tayînkirin hatin eşkerekirin. Li gor vê yekê Şirnex, Colemêrg û Êlih jî di nav de di ser 40'an de ji bo şaredariyan qayûm tên tayînkirin.

**Binali Yıldırım: Dor hate şaredariyan**

Serokwezîrê Tirkiyê û Serokê AKP'ê Binali Yıldırım hefteya borî di koma civîna partiya xwe de axivî û li ser mijara qayûman bo şaredariyên bajarên kurdan ragihand ku operasyon bi dawî bûn û dor hat şaredariyan. Yıldırım wiha axivî: ""Hûnê ji bo rê, park, kanalîzasyon çêkirinê û piştgiriyên civakî ji dewletê pereya bistînin, paşê bi dek û dolaban vî pereyî bidin rêxistinê. Emê hesabê wan çavkaniyên dewletê ku ji bo milet da û wan rêvebirên herêmî bi kar neanîn, bipirsin. Di vê mijarê da jî verastkirin wê bê meclisê."

**PKK: Qayûm wê bibin hedefa me**

Endamê Komîteya Navendî yê PKK û Serfermandarê HPG'ê Murat Karayılan jî li ser mijara qayûman got ku 'hemû pirên heyî diteqînin' û eşkere kir ku eger hikûmet dest dêyne ser şaredariyan, wê çaxê kê bikin şaredar ew wê bibin hedefa wan.

Li ser vê mijarê şaredarên Şirnex û Nisêbînê ku tevî bidawîbûna operasyonan jî di bin qedexê de ne û Serokê Baroya Şirnexê Nuşîrevan Elçi ji BasNûçe'yê re axivîn. Şaredarên herdu bajaran dibêjin tevî hemû lêkolîn û pişkinandina jî tiştek nehatiye dîtin û dixwazin şaredariyên ku nekarin bi riya hilbijaritinan bi dest bixin, bi darê zorê bigirin dest û ev zordarî ye û li dij hiqûqê ye.

Serhat Kadirhan: Rewşa fîîlî dikin fermî

Hevşaredarê Şirnexê Serhat Kadirhan dibêje ji xwe xebatên wan tên astengkirin û radigihîne ku wê bi vê yekê rewşa fîîlî bikin fermî û wiha daxive: "Ev nêzî 8 mehane ev mijar di rojevê de ye. Di dema Davutoğlu de de jî ev anîn ziman. Ne mijareke nû ye. Wê bi çi awayî û çawa vê yekê pêk bînin hêj ne diyar e. Li holê pêşnûmeyek tûne ye. Lê belê tim dibêjin pêşnûmeya me amade ye. Ji xwe bi awayekî fîîlî ev pêk hatiye. Her çiqas qayûm tune be jî, ji xwe nahêlin em bixetibin. Bi girtinan, desteserkirinan ji xwe nahêlin em li qadê jî xebatên xwe bimeşînin. Ekîbên li qadê asteng dikin. Bi vê yekê jî wê rewşa fîîlî vegûhere fermiyetê."

**'Ev li dij demokrasiyê ye'**

Kadırhan eşkere dike ku ev yasa bûna rewşa fîîlî ye û wiha dirêjiyê dide axaftina xwe: "Ev li dij demokrasiyê. Li holê biryareke dadgehê jî tune ye, bi hin krîterên ne diyar wê kesên ku hatine hilbijartin li gor çi ji peywîrê bixin? Em ji aliyê mifettişan ve heyameke ku tên pişkinînkirin. Encama rapora wan jî hat û tiştekî ku îddîayên wan piştrast dike tê de tune bû. Nexwe wê me li gor çi darezînin? Wê li gor çi min ji peywîrê dûr bixin? Ji xwe ew jî hêj li ser vê meselê lihev nehatine . Ji ber ku eger li ser lihev hatineke hebûya, heta niha wê bixistana meriyetê."

**'Em ê nexşerê diyar bikin'**

"Li Amedê 25'ê vê mehê civîna hevserokan heye. Emê li wir li hev bişêwirin. Fikrên kesayetî hene. Lê hêj me nexşeyeke rê xêz nekiriye. Di civînê de emê jî bernameya xwe amade bikin. Ev tê wateya kuştina demokrasiyê, ev astengkirina kesên ku bi îradeya gel hatine ser kar e. Ev êrişeke li dij vîna gel. Nûner bi rêyên demokratîk hatine hilbijartin, bi rêyên ne demokratîk tên girtin, ji peywîrê tê xistin. Ev bi gotineke nûjen, darbe ye. Ev tê wateya binpêkirina îradeya gel."

**Sara Kaya: Dixwazin destkeftiyên kurdan ji holê rakin**

Hevşaredara Nisêbînê Sara Kaya jî dibêje 'armanc siyasî ye' û wiha didomîne: "Dixwazin destkeftiyên kurdan ji holê rakin. Me di vê mijarê de perê ku me xerckiriye li holê ye. Em amade ne ku li pêşberî raya giştî vê yekê eşkere bikin. Eger me ev pere ji bo xizmeta gel xerc nekiribin, em amade ne cezayê xwe bikşînin. Perê ku ew dişînin têrî mûçeyên xebatkarên me nake. Em bi derfetên kêm hewl didin xizmeta gel bikin. Bi vê yekê dixwazin îradeya gel bişkînin. Helbet gel vê yekê qebûl nake. Girîngiya ku dide keyayan û her tim dibêje hatine hilbijartin, lêbelê ew rêza ku ji wan re digirin ji kesekî ku îradeya bi hezaran temsîl dike re nagirin. Bi îddîayên bê bingeh dixwazin vê yekê bikin. Hemû raporên me li holê ne, em ê her tiştê xwe daliqînin. Ka me çi xerckiriye em ê nîşanî herkesê bidin. Di destê wan de delîlek tune ye. Me xebat û xizmetên xwe kirin."

**'Xelk vê yekê qebûl nake'**

Kaya diyar dike ku tevî qedexeyan jî wan xebatên xwe domandin. Ka me çi xebat kirine li Nisêbînê, ew perê ku ji şaredariyê re hatiye me çi jê kiriye her tişt li holê ye. Hevşaredara Nisêbînê wiha daxive: "Ev bi mehane tu kes nikare derkeve û bi hezaran kes koçber bûne. Gel dixwaze di demek nêz de vegere ser warên xwe. Bi dehan caran ev rêbaz ceribandin. Niha rewşa Nisêbînê li holê ye. Xelk berbelav bûye. Xelkê Nisêbînê jî vê yekê qebûl nake. Nedîtina îradeya gel ne ewqas hêsane. Em ne bi serê xwe hatine û ya girîng ne em in, ya girîng îradeya gel e. Li ber çavnegirtina vê îradeyê tiştekê çareser ankin, tu bingeha îddîayên wan tune ne. Xelk em hilbijartine. Din ava ewqas bêhiqûqî û neheqiyan jî dixwazin vê yekê jî bikin. Projeyên me hene. Bi vî awayî nabe. Gel destdanîan ser şaredariyên xwe qebûl nake."

**Newşirvan Elçi: Ev yek li dij hiqûqê yê**

Serokê Baroya Şirnexê Nuşirevan Elçi jî radigihîne ku tu aliyên hiqûqî yên vê meseleyê tûne ne. Ji peywîrxistin tenê bi rêya hilbijartinan dibe. Elçi dibêje ev li dij hiqûqê yê û wiha diaxive: "Yasayîbûn û hiqûqbûn ji hev cûda ye. Her çiqas bingeha wê ya yasayî amade bikin jî, ev li dij hiqûqê ye. Ji bilî rêbaza hilbijartinê tu riyên din ne meşrû û hiqûqî ne. Wisa xuya dike ku wê vê yekê pêk bînin. Armanceke wan ya bi vî rengî heye. Eger şaşiyek şaredaran an jî şaredariyan hebe, riya sererastkirina vê şaşiyê daraz e, darezandin e, ne ku guhertina kesan û riyên derveyî hiqûqê ne. Eger pêkanîneke dij hiqûqê hebe, divê ev bi riyên hiqûqî were sererastkirin."

**'Ev pêkanîn xizmetê ji aştî û aramiyê re nakin'**

Serokê Baroya Şirnexê diyar dike ku şaredarî her tim di bin kontrol û pişikandinê de ne û gotinên xwe bi van hevaokan bi dawî dike: "Tu eleqeye van helwest û pêkanînan bi hiqûqê nîne. Îzah û mantiqa vê yekê tune ye. Ev helwest wê rewşê aloztir bikin. Ya ku divê bê kirin, ji bo jinavbirin û arîşeyan divê hewldan hebin. Divê ji van pêkanînên ku wê rewşê aloztir bikin, xwe dûr bixin. Ev pêkanînîn xizmetê ji aştî û aramiya herêmê re nakin."





# Diyarbekirî de pêşangeyê fotografan

Hebûn Okçu





Fırat Anlı va "Na dewlete de, se serrê peyênî de, fikiryayîş, bawerî, fikrê sîyasî yan fikrê muxalifî ra derheqê gelêk kesan de qerarê tewqîfkerdişî, qerarê surgunîye vecîya. Bi se hezaran kesî mahkûm bîy. Ma eger qalê Hepisxaneyê Saraykapı bikerin, ê hepsîyê ke uca mendêne, mîyanê înan de semedê hunerê ma gelêk merdimê muhîmî estê. No hal Hepisxaneyê Metrisî de, Hepisxaneyê Mamakî de zî wina yo. Ma nêeşkenê vacin no hal, na rewşe vurîyaya. Hema hema heyatê ma hemîne yan heyatê pêro merdiman yan mîyanê dêsanê hepisxaneyan de yan zî peyê dêsanê hepisxaneyan de derbas beno."

Dîyarbekir de 11 Hezîran 2016 de Parka Sumerî de, Galerîya Hunerî ya Amedî de pêşangeyê fotografan abî. Pêşange bi nameyê "Zere ra bi teber, teber ra bi zere: Pirdê Fotografan" (İçeriden dışarı, dışarıdan içeri: Fotoğraf Köprüsü) dest pêkerd û heta 25 hezîrane go dewam bikero.

Pêşange hetê Grûba Fotografan ya Red'î û bi 'Ekîbê Görülmüştür' ra organîze beno. Projeyê înan gulana 2015î de dest pêkerdo. Ekîbê Görülmüştür ke wazenê têkilîya hepsîyanê şorişgeran û teberî virazê, 55 fotografê Grûba Fotografan ya Red'î hepsîyan rê şirawtiê, hepsîyan zî nê fotografî şîrove kerdê û apey seba grûbe şirawitê.

Serokê Şaredarîya Pîle ya Dîyarbekirî Fırat Anlı zî hamebi akerdişê pêşangeyê "Zere ra bi teber, teber ra bi zere: Pirdê Fotografan."

**"Şarê ma gerek bêro no pêşangeyî û nê fotografanê muhîman bivîno"**

Akerdişê pêşange de Serokê Şaredarîya Pîle ya Dîyarbekirî Fırat Anlı va: "No welato ke ma tede ciwîyenê, mileto ke tede yo, no milet reye esta nêeşkeno xo îfade bikero û reya esta zî nêeşkeno cuya xo azad dewam bikero. Teber de hal wina bo, la zere de senî beno? Merdim mîyanê çar dêsan de zî bo, hêvîya xo bi cewherê hetê çepê sîneyê xo ra, yanî zerrîya xo ra gêno. Bawerîya xo bi cuya xo, bi ciwîyayîşê xo û bi hêvîya xo ano. Na dewlete de, se serrê peyênî de, fikiryayîş, bawerî, fikrê sîyasî yan fikrê muxalifî ra derheqê gelêk kesan de qerarê tewqîfkerdişî, qerarê surgunîye vecîya. Bi se hezaran kesî mahkûm bîy. Ma eger qalê Hepisxaneyê Saraykapı bikerin, ê hepsîyê ke uca mendêne, mîyanê înan de semedê hunerê ma gelêk merdimê muhîmî estê. No hal Hepisxaneyê Metrisî de, Hepisxaneyê Mamakî de zî wina yo. Ma nêeşkenê vacin no hal, na rewşe vurîyaya. Hema hema heyatê ma hemîne yan heyatê pêro merdiman yan mîyanê dêsanê hepisxaneyan de yan zî peyê dêsanê hepisxaneyan de derbas beno"

**"Ma wazenê mîyanê şarî û hepsîyan de têkilî virazîyo"**

Koordînatorê Ekîbê Görülmüştür Adil Okay semedê nê pêşangeyî wina malumat da: "Ekîbê Görülmüştür bî panc serrî hepsîyan dir têkîlîye de yo. Ma gelêk kampanyayê sey hepsîyan rê şirawiştişê mektuban organîze kerdî. No pêşange zî nê kampanyanan ra yew o. Ma wazenê mîyanê şarî û hepsîyan de yew têkilî virazîyo. Bi no fikir ma di tewirê hunerî ardî yew ca, kerdî yew. Hunerî edebîyatî û hunerî fotografî."

**"55 Fotografî, 30 Hepisxaneyî, 55 Hepsî û 55 şîîrî..."**

"Beşê fotografan de zî ma bi Grûba Fotografan ya Red'î dir şuxulîyayî. Na grûbe ra 55 kesan 55 fotografê xo ma rê şirawitî. Ma zî nê fotografî 30 hepisxaneyan rê şirawitî. Nê hepisxaneyan de 55 hepsîyan ma rê semedê nê fotografan şîîrê zaf weşî nuştî. Ma bawer nêkerdêne ke hendêk weş bibîyêne. Çimkî heta fotoğrafî şîyêne hepisxane û heta hemayêne proseseko zaf zehmet bi. Pêşangeyê fotografan yê 'Zere ra bi teber, teber ra bi zere: Pirê Fotografan' Diyarbekir ra ver, ma Mersîn, Adena, Batman, Ruha û Îstanbul de akerdbi. Badê tîyayî ma go şêrin Îzmîr, Anqara û Ewropa. Ma şêrin ça, ma wazenê derheqê hepsîyan de yew hissîyat virazîyo. Eleqeyo ke nîşanê pêşangeyî beno ra ma memnun ê. Hîna zaf aîle û merdimê hepsîyan yenê. Yenê û nê fotografan vînenê, ê zî zaf keyfweş benê. Ez hevîdar a ke pêşange bi no eleqe dewam bikero."

**"55 Hepsî, 55 Nameyî..."**

Pêşange de 55 fotografî estê. Nê fotografê fotografantoxanê namdaran verê cû hepsîyan rê ameyê şawitiş. Her hepsîyêk yew fotograf şîrove kerdo yan zî ser o yew şîîre nuşta. Nameyê nê 55 fotografantoxan wina yo: Adem Topal, Adil Okay, Ali Osman Abalı, Arzu Aybat Yaşar, Atilla Atala, Aysel Akbaba, Baki Gülhan, Bekir Tuğcu, Birgül Şahin, Burcu Çatıker, Canan Mengün, Cansel Özoğul, Çağdaş Erdoğan, Damla Atak, Emine Başa, Engin Çolakoğlu, Enver Enli, Ercan Yiğit, Eyhan Çelik, Ezgi Özyetkin, Güner Kaya, Hakan Tosun, Halil Doğan, Hayri Tunç, İsmail Gökçe, Metin Ekinci, Murat Kıcır, Murat Yazar, Özcan Yaman, Pembegül Gökçek, Pınar Turan, Sakine Yıldıran, Seda Öz, Selah Özakın, Selda Öztürk, Sema Barbaros, Serkan Çolak, Sevra Nihal Ünal, Sinan Kılıç, Sinem Sayar, Sultan Güner, Tahir Bozkurt, Tolga Sezgin, Ulaş Tosun, Ümran Düşünsel, Yasemin Arslantaş, Yasemin Karaca, Yasin Irmak, Yeşim Ağaoğlu, Yeşim Oğuz, Yusuf Aslan, Yusuf Özdemir, Yücel Tunca, Yüksel Uygun, Zeynep Türközü.

Nameyê 55 hepsîyan zî wina yo: A. Kerim Aktaş, A.Rahim Yıldız, Adnan Öztel, Ahmet Bilge, Ali Osman Köse, Ayhan Kavak, Aynur Epli, Bejdar Ro Amed, Burak Yiğit, Deniz Tepeli, Ebedin Abi, Edip Yalçınkaya, Ercan Binay, Erdal Aslan, Ergül Çiçekler, Erol Engin, Erol Zavar, Eylem Baş, Fadime Özkan, Ferda İldan, Ferman Mordeniz, Fikret Karakoç, Gönül Bulut, Gülazer Akın, Hacı Nehsan, Hasan Gülbahar, Hasan Şahingöz, Haydar Sönmez, Hıdır Yıldız, İbrahim Şahin, Kamil Turanlioğlu, Kenan Karaaslan, M. Nuri Özen, Mahmut Ulusan, Mehmet Boğatekin, Metin Yamalak, Muhabbet Kurt, Musa Şanak, Mustafa Ağcakaya, Nurettin Erenler, Özlem Özdemir, Resmiye Vatansever, Resul Kocatürk, Rıdvan Yusufoğlu, Ruşen Özkan, Sedat Ot, Seyit Oktay, Sinan Bülbül, Şehnaz Şahin, Şemsettin Özer, Veli Özdemir, Yusuf Demir, Zeki Kayar, Zeliha Bulut, Zeynep Avcı.

Mîyanê nê 55 hepsîyan ta tena Musa Şanakî mîyanê şîîra xo de çend rêzî bi kurdkî (kurmanckî) nuştê. 54 hepsîyanê bînan nuşte û şîîrê xo bi tirkî nuştê. Musa Şanak nika 2 No'lu F Tipi Ceza İnfaz Kurumu, Sincan/Anqara de maneno.

Kenbaz dikene
Ronî dike
Tarîya têger
A xizan
A li pişt derîyê nîv vekîrî

Seba melumatî zêdeyî û derheqê heme hepsîyan de merdim eşkeno keyepelê www.gorulmustur.org ziyaret bikero.

**Grûba Fotografan ya Red'î**

Bi gorê fekê înan, ê xo bi no qayde danê şinasnayîş: Grûba Fotografan ya Red'î seranser bi reya pratîk ser o eşkenê bêrê pêser û projeyanê kolektîfan, projeyanê somutan virazê. Na grûbe de hunermend, muxabîrê fotografan û fotografantoxî estê. Nê merdimî makîneyanê xo yê fotografantişî yê profesyonelan yan zi amatoran reyde resenê amancê xo. No resayîşê amancî de qaydeyê fotografî û estetîk muhîm o. Na çarçewa de kam wazeno eşkeno bêro mîyanê ma û bibo Fotografantoxê Red'î.

Grûba Fotografan ya Red'î, badê pêşangeyê ma "Îstanbulî Îşgalî, Gulane 2008 (İşgal İstanbul'u, Mayıs 2008)" hezîrana 2008î de bi 27 fotografantoxan saz bîye û ma Grûba Fotografan ya Red'î ronaye.

# Roşan Lezgînî na rey bi tirkî nuşto

Qefir Bêkes



Bi nameyê Sorgu yew kitabê Roşan Lezgînî vejîya. Kitab hetê Weqfa Îsmaîl Beşîkçî ra 2015 de Îstanbul de weşanîyayo û 143 rîpelî yo. Derheqê kitabî de Îsmaîl Beşikçi, Nadîre Güntaş Aldatmaz û Ümran Düşünsel sey vateyê verên destpêkê kitabî de fikrê xo nuşto. Nuştox kitabdê xo de behsê qismêndê cuya xo keno; rojanê tarîyan û xiraban ra behs keno. Mi ke Sorgu girewt xo dest, heta ke qedîya mi destê xo ra veranêda.

Roja ke kitab kewt destê mi, ez şaş bîya. Heta nika mi tayê nuşteyê Roşan Lezgînî bi tirkî ya wendbî labelê kitabê ci bi tirkî estbî yan çin bî mi nêzanayê. Ez şaş menda. Dima ez ewnîyaya ke kitabo yewin o ke ey bi tirkî ya nuşto. Mi zaf meraq kerd ke na çi mesela bî ke bi tirkî pê kitab dabî nuştene.

Nuştox derheqdê bi tirkî nuştişê kitabî de fikrê xo wina îzeh keno: "Demêndo derg mi bi zanayiş a qiseykerdiş û dima zî nuştişê bi tirkî red kerd." Sedemê bi tirkî nuştişî wina eşkere keno: "Semedo ke mi çar serî mekteb wendo coka tayê merdiman îdîa kerdêne ke ez tirkî weş nêzana. Seba ke halê xo yo nîmasîmîlebîyayî, sistbîyayişê xo binimnê tim no tawrê mi werdî dîyêne. Bi tirkî nuştişê nê kitabî beno ke bindê mezgê mi de waştişê cewabdayişê nê merdiman bo. Yew sedemo bîn zî no yo: Eke merdim ziwanê xo rê hakim bo, eşkeno sewbîna ziwanan zî weş qisey bikero. Bi tirkî nuştişê mi beno ke îsbatkerdişê ney bî. Yew sedemo bîn zî no yo: çîyê ke kitab de behsê înan beno wa hetê şarê tirkî ra zî bêrê zanayiş." (r. 15-16)

Bîyenê ke kitab de behsê înan beno menga nîsane de, serra 1996 de dest pêkenê. Kurdê ke ê rojan de ciwîyayê zaf weş zanê ke o wext her roje însanî ameyê taqîb kerdene, girewtene, îşkence kerdene, kiştene. Nê çî Dîyardbekir de parçeyê cuye.

O wext Dîyarbekir de yew bufeya Roşan Lezgînî estbîya, xo rê bufe şuxulneno. Bi bîskîleta xo şino kardê xo. Vîrardişanê ey de zaf çîyê tehlî estê. Kitab de ca dano tayê nimuneyanê nînan zî. Zaf rey polîsî yenê bufeya ey, meseleyê ke mabênê ey û polîsan de ravêrenê ma kitab de vînenê. Ma vînenê ke şert û mercê ê serran qet rind nîyê. Kes vano qey Dîyarbekir tena ê polîsan o. Her kesî ra hurmet pawenê, wahîrê her çi yê, şirê kotî ganî her kes her çî qebul bikero. La Roşan Lezgîn qebul nêkeno û seba qebulnekerdişê xo zaf rey înan reyde munaqeşe keno. Sewbîna meseleyê sey nînan zaf estê, nuştox tena meseleyanê xo nêvano, ge-ge meseleyanê sewbîna merdiman ra zî behs keno.

Nuştox bindê teqîbê polîsan de yo. Ge-ge eşkera zî yeno teqîb kerdene. Seba ke xo na rewşe ra bireyno her çî fikirîyeno. Eke welat de bimano teqes o do bêro tepişîyayiş, eke Dîyarbekirî biterikno yan o do şiro ko, yan şiro metropalanê tirkan yan zî o do şiro Ewropa. Hend xorîn fikirîyeno ke, eke bêro kiştiş wazeno ke laşê ci bîle pak bo. Nuştox zano ke nê şert û mercan de tena geyrayiş çîyêndo xirab o, seba ney tim xo het de yew merdimî ya şino keye.

Rojê birayê xo ya şino bufe, maya ey zî yena, qeçandê xo ya roşena. Dima şina keye. Badê şîyayişê maya ci polîsî yenê hem ey hem birayê ci gênê û benê. Benê neweşxane û uca ra zî ey benê îşkencexaneyê polîsan. Çimê ey girewte yê, labelê bajarê xo hend rind zano ke fetilîyayişan ra fehm keno ke ey benê kotî.

Roşan Lezgîn verê ke bigêrîyo derheqdê ifadedayişî de zaf kitabî wendê û xo paweno ke nêkewo bindê tesîrdê polîsan. Çinayanê ci ci ra vejenê. Hemen dest bi îşkence kenê û ci danê erd ro. Tîya de îşkenceyê ke ci rê bîyê înan ra zî behs keno. Wexto ke kes waneno kes vano qey ê çîyê ke bîyê, ê îşkenceyî kesî rê zî yenê kerdene. Tena îşkenceyê fîzîkî ney esas îşkenceyê psikolojîkî yenê kerdene. Mucadeleyo ke dano zafane vera nê îşkenceyanê psîkolojîkan de yê. Helbet canê ey dejeno, nêeşkeno payanî ra vindero labelê yew îşkenceyo sîstematîk yeno kerdene. Seba ke heme çî vajo, heta çîyo ke nêzano, qet elêqeyê ci çin yo derheqdê înan de zî malumat bido û bibo wahîrê sucî.

Kitab de tayê cayan de meseleyanê bînan ra zî behs keno, behsê merdimanê ke mabênê dewlet û rêxistine de mendê, merdimê ke bindê îşkenceyan de mendê, kitabî de ca gênê. Tîya de yew meselaya girane esta ke wexto mi wende ez zaf dejaya. Yew cinêka pîre yena bufeya ey. Na cinêke tirk a, Qonya ra ya. Dikanê mêrdeyê ci Dîyarbekir de yo. Cineke rey-rey yena bufe de ronişeno. Roşan Lezgîn bi zanayiş a tirkî qisey nêkeno labelê seba xatirê na cinêka tirke tirkî qisey keno. Na cineke 15 serrî ra vêşêr o ke Dîyarbekir de ciwîyena. Fina rojê na cineke bufe de ronişena, cênîya Roşan Lezgînî zî yena bufe. Cênîya ey zaf tirkî nêzana labelê a zî Hecî Ana goşdarî kena. Roşan bi cênîya xo ya kurdî qalî keno. Hecî Anaya tirke hema kewena suhbetê înan mîyan û înan ra vana ke şima çi rê tirkî qalî nêkenê? Roşan Lezgîn zî bi nermek a, bi weşî ya ci rê vano ke cênîya mi zaf tirkî nêzana, no ziwanê ma yo. Labelê cinêk çîyê fehm nêkena. Roşan fina bi nerme ya vano ke Hecî ana 15 serrî yo ke ti ya tîya de ciwîyena, seba çi ti qet kurdî nêmisaya? Cinêka tirke zaf rindek cewab dana! Vana ez ziwanê şima se bikera. Na qiseyênda zaf baş a. "Ez do ziwanê şima se bikera?"

Bindê îşkenceyan de îşkencekerdoxî tim ci ra pers kenê vanê "Adam olacan mı la?" O zî xo zerrî de vano merdimêndo senî? Yanî wazenê Roşanî ra merdimêndo senî virazê?

Roşan cewabanê nê persan zano. Îşkencecîyan waşto ke o bibo merdimêndo sereyê xo ronaye bo, waşto ke teslîm bo. O wext ey do bibîyayê "adam!"

Kitab de zaf çîyên ercîyayeyî estê. Ganî her kes, xususen her kurd nê kitabî biwano. Hem yew merdimî ser ra derheqdê tarîxî de, derheqdê dewletbîyayîşî de wahîrê malumat beno û hem zî kes senî destê xo dişmendê xo rê eşkera nêkeno, nê çîyan museno.







## Roşan Lezgîn kam o?

1964 de dewa Licê Dingilhewa de ame dinya. 1996 ra dest bi nuştiş kerd. Nuşteyê ey kovar û rojnameyan de bi kurdkî (kirdkî û kurmancî) û tirkî weşanîyayê. Heta nika newê înan tercume 23 kitabê ey weşanîyayê. Nînan ra çar hîkaye, yew şîîre, di ferhengî, di gramerî, yew arêdayîşê lîteraturî, yew sanikê arêdayeyî, yew meqaleyî, yew vîrardiş û yew zî cigêrayîş 14 kitabê ey telîf ê, êyê bînî tirkî, fariskî û mîyanê lehçeyanê kurdkî de tercume yê.

Ey bi desan kitabê gelêk nuştoxan yê bi kurmanckî û zazakî ke weşanxaneyanê cîya-cîyayan ra weşanîyayê redakte kerdî û weşane rê amade kerdî.

Edîtorî û redaktorîya rojnameyê yewin yê safî bi kurdîya zazakîNewepelî keno. Ancî kurdîya zazakî de kovara edebî hunerî Şewçila weşaneno. Sewbîna zî 2009 ra nat keyepelê bi kurdîya zazakî www.zazaki.net îdare keno.



### Bizava Aşîtiya Navxweyî

# Hewldana aramkirina aloziya siyaset û civakê




Îbrahim Pirsûsî



Bi mebesta parastina aştiya civata kurdî li herçar perçeyên Kurdistanê damezrandina Bizava Aştiya Navxweyî (BAN) 14 Hizêranê li Hewlêrê hate ragehandin.

Hat zanîn ku hewldan hatiye dayîn ji bo hemû aliyên siyasî yên Kurdistanî razîbin ji bo duristkirina vê tevgerê ku dê bibe derfetek ji bo hemû aliyên siyasî yê Kurdistanî li her çar perçeyên Kurdistanê bi riya gotûbêj û siyasetê, dê bikaribin pirsgirêkên xwe çareser bikin.

Serokê Bizava Aşitiya Navxweyî (BAN) Dr. Mûsa Kaval ji BasNûçê'yê re da zanîn ku ev proje di encamê lêkolînên bi salan derketiye holê û wiha got: "Ev projeyeke dem dirêj e ji bona Bizava Aşîtiya Navxweyî li Kurdistanê çêbibe. Me xwest bersiva 2 tişta bidin. Yek çima tifaq di nav kurda de nîne? Ya duyem jî wê tifaqek wiha çawa çêbibe? Bi şeklekî din çima aşîtî di nav kurdan de nîne? Çawa mimkûn e aşîtî çêbibe? Min lêkolînek siyasî, felsefik û komelnasî kir. Lêkolîn bi salan devam kir. Ez gihîştim wê qanaatê. Di civaka kurdan de bi taybet din nav rêveberên kurdan ê kevin de wekî mîr, beg, axa, serok eşîrên kurdan, herwiha di navbera rêveberên partiyên siyasî yên niha de aşîtî nebû ye. Li gel wê ji bêyî aşîtiya navxweyî nikarin li tu parçeyekî Kurdistanê azadiya xwe bi destxînin. Enerjiya xwe, qeweta xwe zêdetir di pirsgirêkê navxweyî de rijandine. Bi nakokiyan ve li Kurdistanê de rewş aloz û lewaztir bûye. Ji ber wê yekê hêzên dijberî kurdan karîbûne kurd zêdetir bera hevdû bidin. Nakokiyên navxweyî kûrtir dikin. Bi lêkolînek wisa de em gihiştin vê qanaatê ku bona ji holê rakirina gengeşî û nakokiyan di nav kurdan de û damezirandina aştiyek nawxweyî hewildanek mezin pêwîst e."

### "Em ê feraseta heyî biguherînin"

Akademîsyen Kaval bal kişand ser xebatên xwe yên di derbarê civaka kurd jî de û wiha got: "Wê demê kurd dê hem di nav xwe de aşîtiyê çêbikin, hem li gel cîranê xwe jî aşîtiyê çêbike. Heta ku kurd di navxwe de lewaz be, nikarin li gel cîranê xwe ji bibin qewet û muxatab. Ji bo wê yekê di lêkolîna li ser esasekî felesefîk û komelnasî me ev pirsa kir: Gelo dê çareserî çibe? Di encam de gihiştim wê kanatê ku pêwîstiya guherandina hişmendiyê heye. Li nav me kurdan de zîhniyeta bi hevketinê û dijheviyê hakîm e. Kurd dikarin ji bo gotineke biçûk arîşeyek mezin çêbikin. Dikarin jo bona şerê di navbera du zarokan de du malbat, paşê du eşir rabine hev û bi dehan însan ji hev bikujin. Ev hişmendî dibe sebep ku hem di aliyê civakî de hem di aliyên şexsi de rikbendî çêbibe. Ji bo wê me xwest em li ser ev hişmendiyê kar bikin, ne tenê kar ji bona çareserkirinê em bizavekê ji avabikin. Bizaveke ne siyasî. Li ser vî esasî me dest bi avakirina Bizava Aşîtiya Nawxweyî kir."

### BAN li ser bûyerên komelgeha kurd jî kar dike

Serokê BAN'ê Kaval balkişand ser armanca damezrandina bizavê jî û wiha berdewam kir: "BAN, tevgereke felsefî, fikrî û aşîtîxwaze. Ne siyasî ye. Ne li dijî partiyên siyasî ye. Ne jî alternatifa tu kes yan jî partiya ye. Ji bo wan e. Ji her çar parçeyên Kurdistanê ji aliyê şexsiyetên hunermend, rewşenbîr, akademisyen û bi civaka medenî ve kar li ser vê projeyê hat kirin. Piştî xebatek dûr û dirêj me Bizava Aşîtiya Navxeyî di 14'ê Hezîranê de damezirand. Du beşên armancê hene; Armanca civakî, belavkirina fikra aşîtiya nav xweyî di nava gel de. Çawa dikarin bi awayekî aştiyane û pêkve jiyankirina Kurdistaniyan re zemînek were çêkirin. Ji bona dijberhev sekinandin û rikgirtinê ji nav kurda de nemîne yan jî kêm bibe. Her wiha hişmendiya ku dibe sebep ji ber tiştên pûç û vala bi sedan jîn têne kuştin, têne îşkencekirin yan ji têne birindarkirin holê weri rakirin. Jin û mêr bila bikaribe wekî hev di civatê de beşdar bibe. Di warê siyasî de ji hemû arîşeyên niha di nav hêzên siyasiyên kurdî de çi di hûndirê parçeyekî Kurdîstanê de çi navbera hêzên cudayên Kurdistanê de be riya diyalog û rêzgirtina hew, li ser esasê hevdû qebûlkirin arîşeyên xwe bikaribin çareserbikin. Nakokî û dijayetiya navbera hêzên Kurdîstanî de nemîne hem fikrî hem kiryarî û hem di çapemeniyê de xebateke hevbeş bêkirin ji bo pêşeroja gelê kurd."

Li aliyê din Dr. Kaval balkişand li ser giringiya diyalog û ji hevdû famkirinê jî û wiha pê de çû: "Emê hewlbidin bira hêz û partiyên siyasiyên Kurdistanî nêzîkî hevbibin. Arişe û pirsgirêkên xwe bi riya diyalog û hurmetgirtina hev ve çareser bikin. Ji bona navbera netewa me û cîranên me wekî netewa tirk, ereb û fars geşbibin. Ji ber ku em di herêmekî bi çar netewan re dijîn dibe ku hinek tiştên me muşterek bin. Her netewek xusîsiyet û taybetmendiyekî wan heye û pêwîst e herkesek mafê wan hebin. Wekhevî hebe di heq û hûkûkan de. Çawa ku mafê ereb, fars û tirkan heye mafên kurdan jî hene."

### "Hemû kes dikare ligel BAN'ê kar bike"

Di berdewama axaftina xwe de Serokê BAN'ê Kaval daxwaz kir ku her partiyek siyasî ya kurd piştgiriyê bide parçeyên din ê Kurdîstanê û wiha berdewam kir: "BAN ji bona çareserkirina pirsgirêkan li her çar parçeyê Kurdîstanê xwe tanzîm dike, saziyên medenî li bajaran, gundan û taxan çêdike. Em giringiyek mezin didin perwerdeyê. Zarokên 2 salî, 3 salî lazim e ji nav malbatê de bi çanda aşîtiya nawxweyî ve bên perwerdekirin. Her wiha dibistana seretayî heta zankoyê de bi wê hişmendiya belav bibe. Ji bo vê armancê me bi navê peymana aşîtiya navxweyî destûrek amadekiriye. Di vê destûrê de ev prensîp hatine nişandan. Daxwaziya me ji beşdarbûna ji her çar parçeyê Kurdîstanê re wekî hunermend, kesayetî, xwendevan, jin, mêr û civan herkes bikaribin di nav bizavê de cih bigrin û dest bikarê xwe bikin û bikaribin ev fikrê di nav civaka kurdî de belavbikin."

### "Hemû kes piştevaniya BAN'ê dikin"

Serokê BAN'ê Mûsa Kaval bangawaziya xwedî derketinê jî li Kurdistaniya kir û axaftina xwe wiha domand: "Ez wekî Serokê BAN'ê bangawazî ji kesên rewşenbîr, hunermend, rêxistinên sivil û partiyên siyasî, jin û mêra dikim. Herkes di asta xweda, gorî îmkanên xwe, herkes cîhê ku lê ye piştgiriya Bizava Aşîtiya Navxweyî bikin. Ev fikr û felsefeya wê pêşveçûnan di nav civaka kurd da belavbikin. Heta niha ji aliyê beşên civak û rêxistênên kurdan ve bi awayekî erênî hatiye pêşwazîkirin. Pêkhatina aşîtiya navxweyî daxwaziyekî her însanî ye. Berjewendiyê partiyê siyasî tê de heye. Di berjewendiyê rêxistinên sivîl de ye. Di berjewendiyê xelk û netewên li Kurdîstanê dijîn de ye. Di berjewendiyê her kesekî kurd de ye. Her çiqas Bizava Aşîtiya Navxweyî tevgerekî nû ye, ev hefteyeke me ragehandiye jî dîsa jî di astek berfireh de pêşwaziyek lê hat kirin. Xetên me baş pêşve diçin. Ji ber vê yekê herkes heta vê gavê piştgiriya bizavê dike. Rola çapemeniyê gelekî girîng e ji bona nasandin û belavkirina nêzîkatiya fikrê aşîtiya navxweyî di nav civaka kurd de. Bila herkesek bizanibe, BAN ne tevgereke siyasî ye. Ne girêdayî tu derekê ye. Însiyatîfek aliyê wê yê felsefi û civakî li pêş e. Tenê ji bo aramkirina civaka kurd û Kurdîstaniya ye. Ne alternatîfek tu kesî ye. Em di wê baweriyê de ne. Tenê wê valahiya mezin li Kurdîstanê dagre."

### "Hêzên biyanî ji parçebûna kurdan îstîfade dikin"

Di dawiya axaftina xwe de Kaval da zanîn ku sedema parçebûyîna kurdan hişmendiya ezperestiyê ye û pêwîst e were guherandin. Dr. Kaval bal kişand hokarên ji hev cudabûna kurdan û tekezkir ku divê ew hişmendî jî ji holê rabe. Kaval wiha got: "Kurd ji hev hesûdiyê dikin, hevdû qebûl nakin, biçûk dibînin sebebê vana hemûyan hişmendî ye. Ev mantalîteya biçûkatiyê de bi destpêkiriye di nava siyasetê de mixabin derdikevi pêş. Ev mantalîte ya 'ez û bes ez, heger ne ez ne kes' e. Ev mantalîteya dibe sebep ku nakokî hem di nav civakê de, hem di nav siyasetê de mezin bibin. Hêzên derve ji van nêzîkatiyan istifade dikin, ji xwe naxwazin kurd bibin yek. Derfetên bi vî awayî tedaxul û destwerdana ji wan re zêde dibe. Daran davêjin ser agîrê di nav mala kurdan de, agir bi hêztir dikin. Bi vî awayî kurdan lawaz dike û bi xwe ve dide girê dan. Em wekî tevgera BAN'ê dixwazin bibin av ji bona vemirandina agirê bi mala kurdan ketiye. Bangawaziya me ji bona her kurd, kesayet û rêxistinên bi berpirsiyar tevdigerîn bibin dilopek av ji bona temirandina ev agirê mala kurdan girtiye."

# Govara Parzemîn
# Em li dû zanistiyê ne

Mehmet Emîn Kan

Li Bakurê Kurdistanê li bin siya şer xebatên wêjeyî, hunerî û zanistî jî berdewan dikin. çend dildarên kurdî yên li Enqerê ne di encama xebatên bi salan ê li ser kurdî dest bi belavkirina Govara Parzemîn kirin. Edîtorê Parzemîn Cûneyt Ewrareş ji BasNûçe'yê re axivî û bal kişand ser armanc û proseya derçûna govarê. Ewrareş da zanîn ku ew dixwazin xwe bispêrin sîwana zanyariyê û li ser zanistê kar bikin û xebatên xwe jî bigihînin xwînerên kurdî.

**Fikra Govara Parzemîn çawa derket hole?**

Di Gulana 2010'an de me komeke bi navê Bernamegeh ava kir. Ev kom bernameyên kompîturê dikir kurdî. Beriya me koma PC-Kurd hebû ku ew kom Ubuntu di serî de, gelek bernameyên kompîturê wergerandibûn bo kurdî. Koma me ji wan cuda bû, me nêzî 200 bername wergerandin. Heta sala 2012'an xebatên me wek werger dewam kirin. Yanê me dixwest tu bernameyên wernegerandî tunebin. Lêbelê ji ber ku Microsoft Windows hêj kurdî qebûl nekiriye bernameyên me tenê dibûn ‚pîne.' Kesên ku bala xwe didanê hebûn, hejmara wan lê ne gorî bendewariyên me bû.

Bernamegeh bi avabûna TeknoKurdê xebatên xwe yên wergerên programên kompîturê bi dawî kirin. TeknoKurd ku hêj aktîf e nûçe û zanyariyên zanist û teknîkî bi kurdî pêşkêş dike. Valahiyek "zanyarî" di stûnên kurdî de heye û xebatên bi vî awayî kêm in. Xebatên bi vî awayî tune ne, yên heyî jî pir lawaz in. Me bi TeknoKurdê di sala 2014'an de govareke Zanist û Teknolojiyê ya bi navê Zanko derxist.

Govara Zanko bi qasî 5 hejmar li ser înternetê wek PDF hat weşandin. Derfetên me pir kêm bûn û heta niha jî hêj kêm in. Di serî de me nedikarî çap bikin. Me 5 hejmar li ser înternetê belav kirin û bawer dikim eleqe jî çêbû. Eleqe her çiqas kêm be jî hin beşên civakê bala xwe didin wan tiştan.

Piştî demekê me dawî li Govara Zanko anî. Lewre me xwest êdî em bi awayekî çapkirî xebatên xwe belav bikin. Serdem her çiqas biguhere jî li gorî me heta 200 salan jî dê tiştên çapkirî her tim qîmettir bin.

**Di nivîsandina van mijarên ku zimanek teknîkî dixwaze de we zahmetî nekêşa?**

Zimanê kurdî birsî û bendewarê xebatên global e. Belkî em nikaribin bibin pireke tam, lê em dikarin bibin stûnekî vê pira zanyariyê. Lê dê her awayî xebatên me yên bê-berdêl bidomin. Bi rastî 3 armancên me tenê hene. Yek ziman, duyem zanyarî û ya sêyan jî standartîzekirina têgeh û hevoksaziya zanistî ye. Wekî tê zanîn Parzemîn bi du zaravayên kurdî, wek zazakî û kurmancî derdikeve. Edîtoriya her duyan jî ji hev cuda ne û ji bo çaksaziya zimên heman govarê parve dikin.

Wek endam û nivîskarên daîmî em 12 kes, wek alîkar û kedkar jî em nêzî 30 kes in. Yanê di her hejmarê de keda nêzî 30 kesî heye. Em ji grafîk, zimannas, wergêr, nivîskar û kedkaran pêk tên.

Bi çapkirina Govara Parzemîn, di dîzayn û stîlê de ji bo me numuneyek hebû. Ji bo me bingeh jî hebû. Mînak govara global National




Geographic, bingeh jî xebatên National Geographic Kurdî ne.

Li şûna ku em bi du mijarên wek "zanist û teknolojî" govarek amade bikin, rêbaza National Geographicê ji me re çêtir hat. Di nav govarê de hemû mijarên zanyarî bicih dibin. Ji keşîfan heta geştûguzaran, ji zanistê heta teknîkiya rojane bi sedan mijar dikarin xwe bispêrin bin sîwana zanyariyê.

Govara Parzemîn jî bi vê vîzyonê dê xebatên xwe bidomîne. Piçek welat, piçek gerdûn û zanyariyên global.

**Hûn mijarên xwe çawa hildibijêrin?**

Em rojeva zanist, keşîf û perwerdeya cîhanê ji nêz ve dişopînin. Bi taybetî di warê zanistê de rojane bala me li ser e. Li aliyê din beriya çend mehan em nexşerêyek amade dikin. Derbarê cih û warên Kurdistanê de em lêkolînan dikin. Deverên ku baş nehatine nasîn an jî zêde neketine rojevê dîsa bi riya govarê didin nasîn. Helbet di warê girtina wêne û bidestxistina agahiyan de em berê xwe didin wan kesan ku bi National Geographic Kurdî re dixebitin. Em ji wan kesan wêne û agahî dixwazin. Govara Parzemîn bi heman kadroya Nat Geo Kurdî dixebite, ji ber vê yekê di peydakirina çavkaniyan de em zêde nakevin tengasiyê. Herwiha di hilbijartina mijaran de National Geographic a navnetewî roleke mezin dileyîze û em gelek caran ji wan nivîs, wêne û werger digirin. Hemû wêne û zanyarî bi destûr û mafê kedkaran tên bidestxistin. Gelek caran jî em bi pereyê xwe dikirin.

Yanê bi kurtasî em bi du awayî mijaran hildibijêrin; rojeva Kurdistanê ya çandî, erdnîgarî û danasînî û rojeva cîhanê ya perwerde û zanistî.

> "Govarên ku heta niha derketine bi tenê li ser edebiyat û lêkolînê ne. Yanê xebatek wisa hewce bû. Her tim edebiyat, her tim helbest nabe. Gelek kesan dixwest ku bi kurdî govareke zanistî, lêkolînî û keşîfê bixwîne. Eleqeyeke mezin heye û niha em dikarin bêjin ku govar hatiye ecibandin. Lêbelê ev yek ji bo me ne armanc e. Armanca me jê zêdetir e."

**Qasî ku em dizanin cara ewil e govareke bi vî rengî li Bakur derdikeve, eleqeyek çawa heye?**

Li Bakur wek zazakî û kurmancî bi van mijaran cara ewil e govareke bi vî rengî derdikeve. Govarên ku heta niha derketine bi tenê li ser edebiyat û lêkolînê ne. Yanê xebatek wisa hewce bû. Her tim edebiyat, her tim helbest nabe. Gelek kesan dixwest ku bi kurdî govareke zanist, lêkolîn û keşîfê bixwîne. Eleqeyeke mezin heye û a niha em dikarin bibêjin ku govar hatiye ecibandin. Lêbelê ev yek ji bo me ne armanc e. Armanca me jê zêdetir e. Di hejmarên pêş de baştir xuya bike ku em ê her ku biçe qalîte û zanyariya govarê zêdetir bikin. Hewldana me ya herî mezin profesyonelîte ye.

A niha welat di nav şer de ye, ji ber vê yekê eleqe li gor dilê me nebe jî em ê heta bêhnfirehiyê karê xwe bidomînin. Em bawer in ku xwe bawerî û berdewamiya govarê dê xwe zêdetir bide xwendin. Em ê heta avabûna girseyeke xwîner a van mijaran, li ser govargeriyê xebatên xwe bidomînin.

Ango eleqe heye, tê xwendin û em bawer in her ku kar û xebatên me dewam bike dê ew eleqe zêdetir bibe û li gor bendewariyên me bibe.

**Di navbera we û National Geographic te têkiliyêk fermî heye yan na?**

Di sala 2015'an de me xebatên National Geographic Kurdî da destpêkirin. Bi rastî eleqeyeke gelek mezin dît. National Geographic an jî bi kurtasî Nat Geo saziya herî mezin a cîhanê ye ku xebatên bêberdêl dike û ji bo zanist û perwerdeya civakê dixebite. Me xwest em bi kurdî bibin beşeke vê Civaka NatGeoyê. Ji ber ku em dizanin di warê zanist, keşîf û zanyariyê de saziyeke lîder e. Em bûn perçeyeke wê û ev yek heta meha nîsanê dewam kir. Piştî meha nîsanê me ji bo têkiliyên Govara Navnetewî ya National Geographic navberek da. Aniha têkiliyên me ji bo govarê berdewam in. Li gor peymanê me xebatên Nat Geo heta lihevkirina govarê daye rawestandin. Di rojên pêş de em hêvî dikin dê xebatên me yên National Geographic Kurdî dewam bikin. Em dizanin ku bi sedan xwîner li benda me ne û em ê hinek bileztir bin. Di vê navberê de me Govara Parzemîn derxist û heta demekê li şûna malpera www.natgeokurd.com'ê me malpera www.parzemin.com'ê aktîf kir.

Gava peyman dîsa pêk hat em ê wek Nat Geo Kurdî vegerin. Em dixwazin xwînerên Nat Geo Kurdî heta vegera me bala xwe bidin Parzemînê. Hêvî û plana me ya herî mezin Govara National Geographic Kurdî ye.

**Hûn beşdarî fuara pirtûkan ya Amed'ê jî bûn, di fuarê de wek ku we daxwaz dikir eleqeyek çê bû yan na?**

Bi rastî fûara pirtûkan a li Amedê ji bo me warê herî baş a reklamê bû. Piraniya xwînerên kurdî xwe gihandin wê derê. Bi hezeran kes hatin û çûn. Hebûna me ya li wê derê gelek kêrhatî bû. Hem di warê danasînê de hem jî wek govareke nip û nû em derketin hemberî xwîneran. Li şûna ku em bi mehan xwe bidin nasîn, hebûna li fûara pirtûkan çêtir e. Ji bo me derfetek baş bû ku me danasîna xebat û armancên xwe kir.

**Em dibînin hûn berê xwe didin erdnîgariya parçeyên din ê Kurdistanê jî. Bi belavkirina babetên ji parçeyên din ê Kurdistanê hûn çi armanc dikin?**

Di vê mijarê de trajediyeke kurdan heye. Em kurdên li çar parçeyê haya me ji hev tune ye. Em ne tenê parçeyên din, parçeya xwe jî bi temamî nanasin. Haya me ji yên din jî qet tune. Govara Parzemîn dê derbarê dîrok, mijarên dîrokî, deverên kevnare û erdnîgariya balkêş ên çar parçeyên Kurdistanê nivîs û babetan amade bike. Ew ê her hejmar bibe danasîna devereke kevnare ya Kurdistanê. Di hejmara yekem de me behsa Çiyayê Bêstûn kir ku ew çiya cih û warê çîrokan e. Ji bo ku em dinyayê nas bikin divê pêşî em xwe nas bikin. Ji bo danasîna erdnîgariya welatê me çi ji destê me bê em ê bikin. Bi taybetî ligel wênegirên Nat Geo Kurdî em ê bêhtir bala xwe bidin deverên dîrokî û çîrokî.